Bidestveanîna Mafên Netewî Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 149
22'ê Çileya Pêşîn a 2010
Buha: 150 Tûmen

# Agirî

Peyamên pîrozbahiya Mistefa Hicrî ji bo Serok û Cîgirê Serokê Partiya Demokrat a Kurdistanê Rûpel:2

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurmancî



## Deyasalar Mayk Molên: Em amadeyî ber bi rûbûna bi Komara Îslamî re ne

Mayk Molên li seredana xwe ji bo Behrênê da zanîn ku Komara Îslamî li hewla bidestxistina bomba etomî de ye, lewre Amerîka li dema hewce de ji bo ber bi rûbûn û pêşîgirtina Komara Îslamî re bi tewahî amade ye. Wî etomî bûna komara Îslamî weke xeterî û gefek mezin li ser hemû cîhanê û bi taybet ji bo cîranên wê ye.

## Malikî daxwaznameya kurdan îmze kir




Rûpel: 5

# Pêşmerge xwîn e li demarên Kurdistanê de


Dîmenek ji Pêşmergên PDKÎ

**Bi boneya 26'ê Sermawezê, roja Pêşmergê Kurdistanê rê û resmek hêja bi beşdariya Sekreterê Giştî ê PDK Îranê, endamên rêberiya Partiyê, mêvan kadr û pêşmerge û malbatên wan li hola civînên PDK Îranê de birêve çû. Li vê rî û resmê** de birêz Kawe Behramî, endamê Deftera Siyasî yê PDK Îranê bi vê boneyê peyamek pêşkêş kir. Herweha çendîn rê û resmên taybet bi vê boneyê li nawendên 1 û 3 a Kurdistanê, Swêd, Fenland, Amerîka, Nurwêj û çend cihên din de birêve çûn. Endam û alîgirên PDK Îranê bi vê munasibeta pîroz li navxweyî welat de çalakiyên berfireh yên teblîxatî birêveçûn. Rapor û deqa peyama Deftera Siyasî li vê hejmara Agirî de dikeve ber çavên we.



## Peyama Deftera Siyasî
Bi Hinceta 26'ê Sermawezê

Hevwelatiyên birêz!
Xelkê şoreşvan û qehreman yên Kurdistanê!
Birêzan Sekreterê Giştî û endamên rêberiyê! Rûpel: 3



## Hey dîrok, me çi anî serê te!

Ebdulla Hicab

Dîrok çiqas bi destê me mirovan belengaz û reben e. Çiqas bê çare ye. Çiqas xedir jê tê kirin, çiqas tê şikandin, ser û binkirin, tevlihev kirin û rastî çewtiyê tê. Yan berevajî, em mirov çiqas bi dîrokê re nerast in, Rûpel: 4



## Rejîma Îranê pêşengê ....

Dara Natiq

Heyamê heyvek berî niha Şêvra Giştî a Rêkxistina Navnetên Hevgirtî, bi piraniya Rûpel. 5



### HUNERMEND KEJAL ADEMÎ:

## HÊVIYA MIN EW E KU BIBIM DENGEK JI BO VÊJEYA JINAN

Xwandevanên hêja û giranqedir! bo vê hejmara Rojnameya Agirî, me hevpeyvînek taybet derheq
jiyan û xebata çandî û hunerî a helbestvan, stranbêj û şarezayê dîroka mosîqaya Kurdî, hunermenda herî hêja û naskirye Rojhelata Kurdistanê, Kejal Ademî re çêkiriye. Emê bi hin pirsên taybet derheq bi aliyên cur bi cur yên xebat û tekoşîna hunerî a hunermend Kejalê, zaniyariyên zêdetir bidin we. Kerem kin em û hûn bihevre hevpeyvîna han bişopînin... Rûpel. 9



## 10'ê Desamberê, roja cîhanî a mafê mirov

Siyamend Terbî

Roja 10'ê Desamberê ji bo çalakvanên mafên mirovan wek rojekî girîng xwe dide holê. Ji ber ku di wê rojê de yek ji bûyerên herî berçav di dîrokê de hatiye tomarkirin... Rûpel. 6

## Peyama pîrozbahiya Sekreterê Giştî ê PDK Îranê bo Serokê Partiya Demokrat a Kurdistanê

Birêz Mesûd Barzanî!
Serokê Partiya Demokrat a Kurdistanê!
Tevî rêz û silavan

Hılbijartina cenabê we bo serokatiya Partiya Demokrat a Kurdistanê li Kongireya 13'hemîn a partiya we de cihê dilxweşiya me ye. Bi vê boneyê ve em pîrozbahiyê ji we û hemû endam û alîgirên Partiyê dikin.

Saxlemî û serkevtina we hêviya me ye.



**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Sekreterê Giştî**
**Mıstefa Hicrî**
**16.12.2010**

## Peyama pîrozbahiya Sekreterê Giştî ê PDK Îranê bo Cîgirê Serokê Partiya Demokrat a Kurdistanê

Birêz Nêçîrvan Barzanî!
Tevî rêz û silavan

Bi boneya hilbijartina we li Kongireya 13'hemîn a Partiyê de, weke Cîgirê Serokê Partiya Demokrat a Kurdistanê, pîrozbahiyên germ yêm me bipejirîne.

Em hêvîxwaz in ku rola we li vê berpirsatiyê de bibe sedema pêşveçûn û bihêztirbûna zêdetir a Partiyê li hemû biyavan de.

Her şad û serbilind bin.



**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Sekreterê Giştî**
**Mıstefa Hicrî**
**16.12.2010**

---

# Sergotar

## Şeva Yelda bi tama hejarî, tepeserî û "Yaraneyan"

ARÎN

### Werin em Yeldayê bi bawera dawîanîna bi tarîtiyê û gihîştin bi ronahiyê cejin bigrin

Şeva Yelda, weke dirêjtirîn şeva salê, cejnekî kevnar û netewî ye ku mêjdem e li nav netewên Îranê de cihekî taybetî ji xwe re vekiriye û bûye parek ji kultor û çanda me.

Yelda serbarê wê ku şeva herî dirêj e, lê awisê gelek bûyer û pîroziyane jî. Ew, mizgîniya demsala Zivistanê dide, kifnê sipî jî dike xelata siroştê û ya ji hemûyan girîngtir, mirovahiyê re jî du pêxemberan dike diyarî; anku **Mîtra** û **Qasimlo** tîne dinê, ku her yek ji wan bûn bi remz û sembola evînî, mêhr, xwebawerî, bawermendbûn bi dawîhatina zulmê û xebat ji bo rizgariya ji tarîtiyê.

Bûyerên han bûn sedem ku şeva Yeldayê pîrozahiya xwe çend qat zêdetir bike û bi birêveçûna cejnan, hersal xwe zîndîtir ragire. Wate her bi bihîstina dengê pêyê Yeldayê ji dûrve, xelik ji hejar û belengazan ve bigre heya zengîn û dewlemendan bixwe dikewin û bi pêşwaziya wê diçin û hewil didin ku berheviya xwe bikin û bi dabînkirina hewcehiyên cejnê, mêvandariyek baş ji Yeldayê bikin. Lewma li dora hev kom dibin û bi xwarinên xweş, bi dîlan û şadiyan ve vê şeva dirêj bi hêvî bi sibehiyên geş û ronahîtir bidawî tînin.

Yeldaya îsal jî weke çend salên borî li halekê de dibe mêvanê mal û dilên me, ku hêj gelên Îranê li bin zulm û zora dîktatorê serdem, anku rejîma Komra Îslamî de ne û ji tu cinayet, girtin, azar û îşkence û hovêtiyan bi nîsbet xelkê Îranê xwe neparastine û hêj dixwazin ku tarîtî û sîbera biyom a xwe bi ser asîmanê welatê me de berdewam bikin. Lewma rast li serûbendê cejna Yeldayê de, bedkaran terh û pîlana xwe a genî û mirar ya bi navê "meremdarkirina Yaraneyan"xistin warê piraktîkê û giraniyek bêhempa û çend qatî li seqa û etmosferek tewaw leşkirî û ewlehî de bi ser xelkê de sepandin û tama cejnê ji wan tal kirin.

Lê xelkê hişyar û têhniyên azadiyê li Îranê de weke her car dîsan teslîmî xwastên rejîmê nabin û dê her li ser lingan bo pêşerojek ronahî û elinda serkevtinan ve bimeşin. Lewra em jî dibêjin werin em Yeldaya îsal bi bawermendiya bi bidawîanîna tarîtî û zulma Komara Îslamî û gihîştin bi asoyek rohntir cejin bigrin. Yelda ji we pîroz be.

---

## Peyama Sekreterê PDK Îranê bo 13' hemîn Kongireya Partiya Demokrat a Kurdistanê

Birêz Mesûd Barzanî, Serokê Partiya Demokrat a Kurdistanê!
Hevalên birêz ên serkirdayetiyê!
Tevî silavek birayane
Bi hinceta pêkanîna 13' mîn Kongireya partiya we, pîrozbahiyên gerim ên xwe û hemû rêberiya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê pêşkêşî we yên birêz û nûnerên beşdar di Kongirê de dikim.
Bêguman bi lêzanîn û tekoşîna we yê birêz, Kongireya we bi serkevtî dê dawî bi kar û bar û bernameyên diyarîkirî ên xwe bîne û encamên wê dê bibin hegera pêşkevtinên din di pêvajoya berbi pêşdebirina pirsa Kurd li Kurdistana Îraqê û destkevtên pêtir bo bizava netewî ya me di herêmê de.
Serkevtina we hêviya me ye.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Sekreterê Giştî**
**Mistefa Hicrî**
**11.12.2010**

## Seredana Serokê HAK- PAR û Serokê PSK -Turkiyê ji Deftera Siyasî a PDKÎ



Li gor rapora nûçegihaniya Kurdistanê, roja Çarşemî, 08,12,2010'an, heyetek ji rêberiya HAK-PAR'ê bi sereperestiya Bayram Bozyel, sekreterê vê partiyê û herweha heyetek ji Partiya Sosyalîs a Kurdistana Turkiyê bi serperestiya Mesûd Tek, sekreterê vê hizbê, seredana Deftera Siyasî a PDK Îranê kirin.

Ew du heyet ji aliyê heyetek ji rêberiya PDK Îranê bi serokatiya Mistefa Hicrî ve bi germî ahtin pêşwazîkirin. Li rûniştinek sê demjimêrî de çend pirsên cîhanî, pêvajoya demokrasiyê û pirsên deverê û pêwendîdar bi doza kurd li hemû parçeyên kurdistanê de, xistin ber bas û bîr û rayên xwe guhertin. Herweha li vê rûniştinê de tekez li ser pêwendiyên dostane yên her sê aliyan hat kirin.

## Beşdariya PDKÎ di civîna rêkxistina Netewên Yekgirtî de



Li gor nûçegihaniya Kurdistanê, Saziya Netewên Yekgirtî, li 14-15'ê Çileya Pêşîn (23 û 24'ê Sermawezê), sêyemîn civîna xwe derheq kêmaniyên cîhanê û pişikdariya wan di abûriyên cîhanî de di binkeya wê saziyê de li bajarê Jinêvê birêve bir.

Luqman Ehmedî, Şêvirmendê komîteya navendî, bi nûneratiya PDKÎ di vê civînê de pişikdarî kir.

Mijara vê konfiransê, beşdariya bi bandor a kêmaniyan di abûriya cîhanê de bû. Civîna han bi pişikdariya nûnerên welatên endam, dam û dezgehên cur bi cur yên UN û saziyên çalak di warê mafê mirov de birêve çû.

Di roja yekem de (23'ê Sermawezê), civîn ji aliyê Serokê Şêvra mafê mirov a saziya netewên hevgirtî, Sîhasak Povangekitev, hate vekirin. Piştî axavtina Serokê Şêvra mafê mirov bas li ser çarçoveya yasaya navneteweyî û çavaniya parastina mafê kêmaniyan û rêçareya herî baş bo pişikdariya wan di abûriya welatên cîhanê de hatekirin.

Piştre bas li ser ax û dewlemendî û samana kêmaniyan û bandora siyaseta welatên cuda li ser jiyana abûriya kêmaniyan hate kirin.

Bas û gengeşeya bi dawîhatina roja yekem taybet bûn bi mafê şolkirin û pirsên civakî a kêmaniyan û erkê welatên cîhanê di vê derheqê de.

Di roja duyem de, basa yekem li ser pişikdariya bibandor a kêmaniyan di darêtina siyaseta abûrî a welatên endam di saziya Netewên Yekgirtî de hatibû terxan kirin. Mijara dawî a civînê taybet bû bi helawardin û cudahîdananên abûrî. Hêjayî gotinê ye ku nûnerê PDKÎ di vê pişka basa civînê de, mijarek derheq bi binpêkirina mafê neteweya kurd li Kurdistana Îranê de pêşkêşî civînê kir.

Herwisan li roja 13'ê Çileya Pêşîn (22'ê Sermawezê) de, anku rojek berî destpêkirina civîna giştî, nûnerê PDKÎ di civînek tevî lêjneya birevebriya civîna giştî de, mijarek derheq binpêkirina mafê netewên bindest ên Îranê ji wan re şirove kir.

Di vê civînê de nûnerên netewên; Erebên Ehwazê, Belûçistan û Kurdistanê ji rêya saziya UNPO ve beşdar bûn. Di heyamê wan du rojan de, nûnerê PDKÎ çendîn hevdîtin tevî hin nûnerên welatên endam di saziya netewên hevgirtî û herwisan nûnerên hin kêmaniyên cîhanî encam dan.

# Peyama Deftera Siyasî Bi Hinceta 26'ê Sermawezê

**Hevwelatiyên birêz!**
**Xelkê şoreşvan û qehreman yên Kurdistanê!**
**Birêzan Sekreterê Giştî û endamên rêberiyê!**
**Kadr û pêşmerge û endamên PDK Îranê!**
**Malbatên birêz û serbilind ên şehîdan!**
**Mêvanên hêja û delal!**
**Silav ji we**

Bi boneya 26'ê Sermawezê, 65'mîn salvegera dahênana navê pîroz ê pêşmerge û 26'mîn salroja diyarîkirinaroja pir ji şanaziya PÊŞMERGE, pîrozbahiyê ji pêşmergên qehreman û xelkê têkoşere kurdistanê û malbatên birêz ên şehîdan dikim ku bi xwîna geş a xwe belgeya domandina xebatê wajo kirin û em hîn kirin heta gihîştin bi armancên wan dest ji xebatê bernedin.

Silav ji girtiyên siyasî ku bi şoreşvanî li hember rejîma tarîtî û sitem û nezaniyê de sekinîn.

**Pêşmerge kê ye?**

Pêşmerge ev şoreşvanê mandînenase ku bêberamber ji bo rizgariya gelê xwe ji destê dîktatorî û kewne perestiyê de, zêdetir ji nîv sedsale can li ser dest xebatê dike.

Pêşmerge ew mirovê newest e ku bi hizrek serdemiyane bo gihîştin bi armancên gelê xwe li rewşên herî dijwar de dixebite. pêşmerge ew mirovê can li ser dest e ku ji hemû şêwazên xebatê ji bo dabînkirina mafên netewî yên gelê kurd li Kurdistana Îranê de li dijî rejîmên kewneperest û dîktator ên yek li dû yek ên Paşatî û Komara Îslamî de rawestiyaye û bi hezaran rûpelên zêrîn li xebata bo azadiyê li dîroka gelê me de tomar kiriye.

**Hêjano!**

Qelem li ast mezinahî , berxwedanî, fîdakarî û cangorêtiya pêşmerge de karîna nivîsînê nine û bersivderê wan hemû şanaziyan nine.

Li dîroka her neteweyekê de qat yan texek bûne sembola rizgarî û bicîanîna armancên vê neteweyê û li vê pêxemê de fîdakarane xebat kirine, nemaze canê xwe jî ji dest dane û bûne bi nîşana rizgariya gel, çirayê ronahîker û dilê wê netewê, rênima û rênîşanderên nifşên pêşerojê; Tex yan qata han li her welatekê de navek ji wan re hatiye hilbijartin û peyker ji şehîdên wan çêkirine ku li zaf welatan de bi Serbazên wunda hatine binavkirin.

Tevgera netewî- demokratîk a gelê kurd li Kurdistana Îranê de bi rêberiya PDK Îranê jî naznavê pîroz ê pêşmerge ji bo şoreşvanên kurd re hilbijartiye. Êdî ev navê pîroz bû bi nîşan û sembola şoreşvaniya kurd li hemû parçeyên Kurdistanê, û li asta cîhanî û bîr û raya giştî de jî weke nîşana rizgarîker a gelê kurd û parêzerê maf û azadiyên vî gelî hat nasîn.

**Xûşk û birayên birêz!**

Li cih de ye ku li vê roja pîroz de em hawriyekê li ser çawaniya diyarîkirina roja Pêşmergê Kurdistanê bidin.

Civîna Komîteya Nawendî a partiya me ku li meha Gelawêj a sala 1363'ê a rojî de pêkhat, li biryarek dîrokî û şoreşvanî de roja 26'ê Sermawezê bi roja Pêşmergên kurdistanê diyarî kir.

Sedema diyarîkirina vê roja dîrokî vedigere bo ser helwesta şoreşvanî a xelkê bajarê Mehabadê ku li roja 26'ê Sermaweza 1324'ê Rojî de, li êrîşek şoreşvanî de bo ser bajêrvaniya Mehabadê û dawîn paşmayî û cihwarê dezgeha tepeserkar a hikûmeta Paşatiyê û têk û pêk dan.

Li wê rojê de desthilata siyasî li beşek li Kurdistana xoşewîst de kete destê xelkê û bi fermî Sipaha Millî ji bo parastin û ewlehiya deskewtên şoreşê hat avakirin.

Piştî avabûna Komara Kurdistanê û xurtbûna Sipaha Millî li bajarê Mehabadê de bo cara yekemîn navê pîroz û pir ji şanazî yê pêşmerge li ser têkoşer û şoreşvanê kurd hat danîn û weke peyva herî şêrîn ketiye nav çanda kurdewarî û paşan dîrokek pir ji serwerî ji bo xwe tomar kir.

Pêşmerge bû bi parêzer û mafxwazê gelê kurd li hemû parçeyên kurdistanê de û niha jî navê pêşmerge li nav bîr û raya giştî a cîhanê de sembola mirovek azadîxwaz û rizgarîkerê gelê çewsawe û zullêkirî yê kurd e, eva jî şanaziyek din a PDK Îranê ye ku afiranvanê navê pîroz ê pêşmerge ye.

Roja 26'ê Sermawezê, roja hemû wan kesan e ku li rûyê niyetpakî û hesta geldostî û nîştimanperwerî ve çek li milê xwe kirine li riya xebat ji bo bexteweriya gelê xwe de ji tu fîdakarî û cangorêtiyekê xwe neparastine û naparêzin jî, herweha li ast dujmin de jî kelehek xweragir û berxweder, û li hember xelkê û hevalên xwe de jî rûxweş, geş, hêdî û liserxwe ye.



Kawe Behramî
Endamê Deftera Siyasî a PDKÎ

Li rastî de roja 26'ê Sermawezê, roja nûkirina peyman û soza navbera gel û pêşmerge ji bo domandina xebat û tekoşîna wan li hember pêpeskar û dijminên gelê kurd e û herweha ji bo xelkê kurdistanê û piştewaniya wan ji keç û xortên can li ser deste wan e ku demên herî baş û xweş yên temen û şîrîntirîn sermiyana jiyana xwe ku canê wan e, pêşkêş bi rizgariya gel û nîştiman kirine.

Li xwe re nine ku li heyama wan çend salan de dujmin ji riya pîlanên cur bi cur ve hewil daye ku yekêtî û yekrefiya navbera gel û pêşmerge têk bide, lê hişyarî û têgihîştina xelkê kurdistanê her car pîlanên dujmin pûç kirine û ew pîlan hertim ji aliyê rêberiya tevgera gelê kurd anku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ve eşkere kirine û tenê şermezarî ji bo dujmin hiştine.

Pêşmerge bi piştewanî û piştqahîmbûna xelkê kurdistanê û bîr û bawera serkevtin bi ser dujminên gelê kurd û bo gihîştin bi armanca xwe ji hemû şêwazên xebatê mifah distîne û li gor rewş û zirûf riya herî baş hildibjêre û xebata xwe bona gihîştin bi maf û azadiyên xwe didomîne.

Niha jî pêşmerge weke qehreman û çelengê nav çepera berxwedanê li kurdistanê piştawanê hemû azadîxwazên Îranê ye û hizba dahênerê nav û roja pêşmerge jî weke rêberiya tevgera gelê kurd li Kurdistana Îranê remza xebat û tekoşînê û sitûna pêşeroja avakerên sîstema federalî û demokrasiyê ji bo gelên Îranê ye. 65 sal bi ser helwesta şoreşvanî a xelkê Mehabadê re derbas dibe û deskewta wê bizavê bû bi Komara Kurdistanê û xebat li dijî her du sîstemên dîktatorî û paremayî yên Paşatî û Komara Îslamî, Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê weke mîratgirê wan deskewtan ji xebata bo misogerkirina armancên gelê kurd li Kurdistana Îranê berdewame û heta serkevtinê rêvîngê vê riyê ye.

Dîrok gewahyarê sîstemên dîktator yên deverê ye, herwek li çend salên derbasbûyî de jî em bo xwe jî şahidê wê bûne. Komara Îslamî a Îranê ne tenê dîktatorî bi ser gelên Îranê de sepandiye, belkî bi vê bîr û hizra kewneperestane ya xwe cehda xurtkirina şoreşê li derveyî sînorên xwe daye û rewşa dever û cîhanê xistiye metirsiyê û dixwaze ev êş û elem û biyomiya ku bi ser gelên Îranê de sepandiye, veguhezîne welatên din jî. Ji bo vê meremê jî ji tu hewlek dijî mirovî xwe neparastiye ku em dikarin bi kurtî îşare bi beşek ji wan kiryaran bikin ku pêktên ji:

Girtin û îdama şoreşvanên Îranî û asteng afirandin li ser riya xwendekaran li zanîngehan de, binçavkirina rojnamevan û mamostayên zanîngehê û tepeserkirina netewan û peyrewên ayînên din, tepeserkirina hovane a bizavên nerazîbûnê, destdirêjî bo ser jinên azadîxwaz û şoreşvan û pêpeskirina mafê jinan, xurtkirina madeyên bêhişker ji bo berxwarkirin û bilarêdebirina ciwanan ji civaka Îranê, destneparastin ji îdama şoreşvanên kurdistan û Belûçistanê weke çepera berxwedan û qahîm a şoreşa gelên Îranê, hewildan ji bo gihîştin bi çeka navikî, perwerdekirin û piştewanîkirina terorîstan, têkdana rewşa ewlehî û asayîşa welatên derve bi taybet welatên cîran weke Îraq, Efxanistan, Pakistan, Lubnan, pêpeskirina mafê mirov û sivikatî û bêhurmetîkirin bi yasayên navnetewî. Hemû evane û zaf yên din kiryarên dijî mirovî yên rejîmê bûne sedema vê ku welatên cîhanê dijî rejîmê helwestê bigrin.

Bi giştî karek wiha kiriye ku rûçikê Îranê li nav bîr û raya giştî a cîhanê de nehez û kotî bike. Ji aliyek din ve pesendkirina çar biryarnameyan ji aliyê rêxistina NY ji bo pêkanîna berbendan li warê aborî li dijî rejîmê, nîşaneya dûrketina vê rejîmê ji civaka cîhanî ye.

Bêşik kiryarên han li warê aborî ve, rengvedanek nerênî li ser jiyana gelên Îranê de dike û rejîm jî bona peçavtina vê şêwaza hizrînê bo pêşgirtin ji nerazîtiya xelkê penayê dibe ber zor û tund û tûjiyê û weke aleva bêdengkirina xelkê Îranê mifahê jê distîne.

**Birêzan!**

Erkê ser milê azadîxwazên Îranê li rewşa niha de bi liberçavgirtina pir netewîbûna vî welatî, yekêtî û saxbûna li ser şêwaza sîstema pêşeroja Îranê û danana pirogramek demokratîk e ku maf û azadiyên hemû xelkê Îranê berçav bigre û hewil bide sîstema herî guncaw û jêhatî ku federalîzm e, li ser bingeha cuxrafiyayî- netewî misoger bike.

Ev kare li pêxem damezrandina sîstema pêşeroja Îranê dê bibe berbendek ji bo kesên oportonîst ku dixwazin li jêr durûşma çewaşekarane de jiyê rejîmê dirêj bikin. Zêdeyî 31 salan e ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê xebata bêrawestan a xwe li dijî rejîma dîktator û serberedayî Komara Îslamî dest pê kiriye.

Xelkê Îranê piştî hilbijartina serokkomariyê li Îranê de li dijî vê sîstemê serî hildan ûrewatî û meşrûieta rejîmê birine bin pirsiyarê. Eve jî li demekê de bû ku rejîmê tu pûte û giringiyek bi encamên wê binav hilbijartinê ku berbijarên wê, more kesên naskirî yên rejîmê bi xwe bûn, neda. Lewre xelkê bêzarbûyî yê Îranê ev derfet bi girîng zanîn û bi awayek berfireh û girseyî li dijî rejîmê serîhildan. Li nav berbijaran de du kes ji berpirsiyarên berê yên rejîmê bi navên Mûsewî û Kerûbî li hewl û cehda wê de bûn ku desthilatê bidestve bigrin, lê Ehmedînijad pêştir ji aliyê Xamineyî ve hatibû diyarîkirin.

Soz û peymanên rejîmê bo azadiya hilbijartinê li nav berbijaran de jî nerast derketin û Mûsewî û Kerûbî bi navê Tevgera Kesk, nerazîbûna xwe bo gihîştin bi desthilatê nîşan dan û komek durûşmên binav azadîxwazane hildan.

Lê ji bo xelkê derket ku dîtin û ramanên Mûsewî û Kerûbî bersivderê xwast û daxwazên gelên Îranê nine û ew alî jî ku tevgera Kesk bi rêberiya Mûsewî û Kerûbî weke riyek ji bo reform û guhertinan li Îranê de dibînin, divêt bizanibin ku li bername û pirogramavan kesan e de ne demokrasiyê cî heye û ne jî mafê netewî manayek heye.

Çunku li her hal de encama vê hizrînê ji hatine serkar a Xatemî baştir nabe û tenê dirêjkirina temenê Komara Îslamî dê pêre be.

Hêza Pêşmergên Kurdistanê û tevgera berheq û azadîxwazaneya wê bi rêberiya PDK Îranê, dê newest û mandînenasane heta gihîştin bi sîstemek demokratîk a federalî ku xwast û daxwaza hemû gelên Îranê misoger bike, dê bixebite û rê nede ku seqa û etmosferek direwîn biser bîr û hizrîna wî/ê de zal be.

# Hey dîrok, me çi anî serê te!



Ebdulla Hicab

Dîrok çiqas bi destê me mirovan belengaz û reben e. Çiqas bê çare ye. Çiqas xedir jê tê kirin, çiqas tê şikandin, ser û binkirin, tevlihev kirin û rastî çewtiyê tê. Yan berevajî, em mirov çiqas bi dîrokê re nerast in, bê berpirsayetî pê re dilîzin, henekan pê dikin, xwe dixapînin, dîrokê dixapînin. Lê gelo heya ku em dikarin xwe bixapînin û çawan heya wê astê em dikarin bi xwe û be kesayetî, dîrok, nasname û hebûna xwe re dexel bin. û di heman demê de jî her bi îdia bin û bikaribin li ber xwedîkê temaşey nav çavên xwe bikin bêy ku ....

Dema bûyerek bi destê mirovan bi xwe nebû û bêy heza mirov hate pêş, wê demê tu lome nayê kirin ku mirov giliyên xwe ji qederê bike û ji dîrokê gazindan bike. Lê karê ku me mirovan bi xwe anî serê xwe, em bi xwe jê berpirsyarin û dibe em riya jê derbasbûnê jî bo bibînin. Bûyerên siyasî ne di dest qederê de ne, di destê mirovan bi xwe de ne. Dîrok jî hema her bi wî awayî, ew jî keda destê mirovan e, berhema têkoşîn yan jî ya şaşitiyên mirovan bi xwe ye. Lewma li hember dîrokê û bûyerên dîrokê, mirov bi xwe berpirsyarin. Êdî bûyer çi bi xêra mirovan herne pêş an encamên xirab jê derkevin, bi her awayî her bi biryar û bi îradeya mirovan diqewimin.

Bûyerên dîroka Kurdistanê jî ji wê yekê ne cuda ne. Her çend Kurd bi xwe ne hostayê sazkirina dîroka xwe bin, lê di avabûna rewşa îro de rola Kurdan bi xwe jî heye. Êdî ew Kurd çi şêwe Kurd bin, bi çi mebestê weha kiribin û di xizmeta kî de bûbin, tu ji rastiya îro naguhere. Rewşa îro tevgera Kurd li Rojhelata Kurdistanê jî di nav de dijî, her bi wî awayî ye. Rêkxistinên siyasiye ku di dema dawî de pêşengiya xebata siyasiye Kurd li Rojhilata Kurdistanê dikirin hem di pêşveçûna armanc û mesaja tevgerê de xwedî rola sereke ne, hem jî, hem jî, hem j ... bêjim an nebêjim, ... hem jî di avakirina rewşa bê serubere niha de.

Ew demeke ku dikim nakim, tu bersiva ji wê pirsê re nabînim ka gelo em ku hin qas bi dîrokê ve girêdayî ne çima tiştekê ji dîroka xwe fêr nabin! Dîroka kevnare vegere, ji ber çi em ji dîroka ku em di nav de dijîn dersekê nagrin. Ya rast, li vir naxwazim bikevim çarçoveya basek felsefî û ji bersiva pirsên bi cewherê jiyanê ve girêdayî bigerim. Li vir tenê dixwazim mijarekê vekim ku em hemû dibînin, lê hinek ji me xwe jê bêxwedî dikin. Em hemû dizanin, lê hinek ji me wê bi nebûyî dihesibînin. Em hemû jê re şahid bûn, lê hinek ji me çavên xwe jê digrin.

Di wan 30 salên dawî de bi gelek şanazî û serbilindiyên ku tevgera siyasiye Kurd li Rojhilata Kurdistanê afirandin re, aliyek tal û bi azar jî hebû. Beşek ber bi çav ji potansiyel û şiyana tevgera Kurd ji ber netifaqî û giriftariyên navxweyî, li hember hev sekinî. Ji wê hê bi êş û azartir, hêzên beşdar di tevgera Kurdistanê de bi salan şerê hev kirin. Bi sedan pêşmergeyên ku ji bo azadiya Kurdistanê hatibûn rêza pêşmergayetiyê, berdan canê hev û hevudin kuştin. Partî û rêkxistin ji hev perçe bûn. Hêza gelê Kurd ji armanca xwe ya sereke ku bi destxistina mafên neteweyî bû dûr ket û hêviyên serketinê bi astengiyên cidî re rûbirû bû.

Lê bûyerên ku ne di kontrola hêzên Rojhilat bi xwe de bûn, hinekê rewş guherand. Atmosfera siyasî guherî û weke ku serdemek nû hatibe pêş, rewşa aloze hundirî tevgera Kurd hinekê êhmal bû û di dawiyê de jî hêviya pêşveçûnên nû xurt bû. Lê pêşengên tevgera Kurd li ciyê ku bi çavên vekirî temaşey bûyerên ku bi xwe afirênerên wan bûn bikin, hewildan ku rastiyan veşêrin. Bûyeran bi nedîtî bihêlin, xwe ji bin barê berpirsayetiya kar û biryarên xwe yên ku hin caran rast nebûn, bawêjin u li bendê bin belkû meşa dîrokê şaşitiyan vedişêre û serdemek nû dide destpêkirin.

Aloziya ku ew demeke dubare di helwêst û axaftinên hêzên siyasiye Kurd li Rojhilata Kurdistanê de derket, çewtiya nêzîkatiya wan çend salan derxist. Çewtî bi wê manayê ku heman zêhniyet û heman helwêst dubare xwe nîşan da. Dijkiryar jî her dubare di heman çarçoveya gotara serdema alozî û netifaqiyan de bûn. Bêy ku yek ji aliyên ku di şer, netifaqî û aloziyan de xwedî biryar û bandor bû, bi qasî serê derziyekê kêmasî û şaşitiyên xwe bibîne, hema rast sûçê hemû bûyerên tal û azarên ku ji encama birakujiya wê demê de derketî xiste stuyê aliyê din.

Dubare heman zêhniyet, heman edebiyat, heman nerastî, heman xwe xapandin, heman xelkxapandin, heman sûçê di derheqa xwe, tevgera neteweyî û dîrokê de bi heman rengê pêşîn dubare bûn. Tenê wê carê ji ber ku meydan guheriye, seferberiya şer û amadekariyên leşkerî di rojevê de nebûn.

Ewê şaşitiyê, hemû êş û azarên dema şer û aloziyan vejiyandin. Lê ji wê hê biazartir, meydan da ku dubare Komara Îslamî rojeva tevgera siyasiye Kurd diyarî bike. Di malperên înternetê de dubare pênûsên kurdan berbûne canê hev. Yek bû parêzvanê Komelê û Hizba Demokrat kuta, yek bû parêzerê Hizba Demokrat û Komele kuta, yek bû parêzerê xeyaliye tevgera Kurd û her du alî kutan û ... lê kesê bi awayê cewherî û bi berpirsayetî ew pirs ji wan berêzên ku dubare êş û azarên dema şer kulandî nekir ka gelo çima hûn dersekê ji dîrokê fêr nebûn u ji bo pêşerojek baştir we bi raburdûya bi êş re teswiye hisab nekir. Kesê nepirsî ka gelo çima we karek nekir ku êş û azarên berê dubare nebin u birînên kevn bicebirin.

Ji bo ku şaşitiyên derbasbûyî neyên dubare kirin, pêwîst nake dîroka çewt were veşartin. Rast berevajî, pêwîste hemû kêmasî bên bas kirin, lê ne ji bo tolstandin û şikandinê, tenê ji bo ders jê girtin û pêşî girtin ji dubare bûnê. Hizba Demokrat û Komelê bi hev re şer kirine, ji hev pêşmerge kuştine, dijî hev axaftine. Lê her du jî di qada siyasiye Kurdistanê de hene û wê bihevre, bi alîkariya alî û hêzên din yên nava gorepana siyasî, pêşeroja gelê Kurd li beşa Rojhilata Kurdistanê ava bikin. Ji bo wê yekê pirsa ku hem em û hem jî Komele pêwîste li ser rawestin ewe ku ka gelo wan şerên bê mana, çi anî serê tevgerê, em çi dersekê jê fêr bûn û emê di pêşerojê de bi çi awayî bikarin pêşiya rûdawên weha bi êş bigrin.

Heya ku her alî bi awayek cewherî bi şaşitiyên pêşîn re dan û standinê neke, îmkana dubare û çendbare bûna şaşitiyan her heye. Digel ku îro hemû siyasetvan û çalakek warê siyasî li Kurdistanê basa pêwîstiya ji hev nêzîkbûn, diyalog, hevgirtin û bihevre karkirinê dike, lê bi kiryar em pêşketinekê nabînin. Ew yek pêwîstiyek din jî bi xwe re tîne; Divê em ji bazneya daxistî derkevin. Divê em ziman û têgehîştina ku qeyranê dixuliqîne li pey xwe bihêlin.

Dem hatiye ku em ji xwe û ji keda xwe xwedî derkevin. Dem hatiye ku em ji şaşitiyên xwe ders fêr bin. Dem hatiye ku em xwe biguherin. Dem hatiye ku em xwe nû bikin. Dem hatiye ku em ji "ez" û "tu" iyê xwe xelas bikin û em bibin EM. Dem hatiye ku em li hember kêmasî û şaşitiyên xwe de bi berpirsayetî tev bigerin. Dem hatiye ku em ji kultûra ne rast re bêjin BES. Dem hatiye ku êdî em li ser lingên xwe rawestin û xwediyê gotina xwe bin. Dem hatiye, dem ...

## Nivîskar û lêkolerê Kurd, Dr. Efrasiyab Helîmî koça dawiyê kir



Li gor rapora nûçegihaniya Kurdistanê, nivîskar û vekolerê Kurd, Dr. Efrasiyab Helîmî, naskirî bi Efrasiyab Hewramî, bervar 16' ê Çileya Pêşîn a 2010 'an, bi sedema rawestana dil di temenê 54 saliyê de, li welatê Rûsiyê koça dawiyê kir.

Dr. Efrasiyab Hewramî xelkê bajarê Nodşeya ser bi devera Pawe ya Rojhilata Kurdistanê bû. Efrasiyab Hewramî di sala 1980' a Zayînî de bû endamê "Çirîk Fîdayiyan" û piştî heyamek kurt navhatî ligel bav û birayê xwe li kêleka hêza Şaho a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê de cihgîr bûn û di zaf çalakiyên wê hêzê de beşdarî kirin. Piştî çend sal xebatê çû bo Yekitiya Soviyet a wê demê û heya wergirtina pileya Duktorayê dirêjî bi xwendinê da.

Dr. Efrasiyab bi armanca xizmet bi gelê Kurd li Yekitiya Soviyetê de dest bi komkirina hejmarek belge û dukomêntan li arşîva wî welatî de kir û berê wê hewl û tekoşîna xwe di du pirtûkan de bi navên "kurd di erşîva Rûsiye û Soviyetê de" û "Rojhilta Kurdistanê di serdemê şerê cîhanî yê duyem de" belavkirin ku pirraniya wan belge û dukomêntan peywendî bi Komara kurdistanê û Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ve hene.

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê jidestçûna wî Kurdê welaparêz bi xesarek mezin dizane û serbarê derbirîna xem û kovanan, behî û serxweşiyê ji malbata wî ya birêz dike.

# Rejîma Îranê pêşengê pêpeskarên mafên mirov!



**Dara Natiq**

Heyamê heyvek berî niha Şêvra Giştî a Rêkxistina Navnetên Hevgirtî, bi piraniya dengan pêşniwîsa biryarnameyekê pejirand ku têde binpê kirina mafê mirov di Îrana bin siya hikumeta totalîter a Komara Îslamî de, bi tundî hate şermezar kirin. Di vê biryarnameyê de derheq bi doma girtin, darvekirin, hepsî kirin, eşkence, tirsandin û şopandina neyarên siyasî û berevankarên mafên mirov, parêzer, rojnamevan û nûnerên mêdiya, rêveber û pêşkêşkerên xedemeyên înternêtî,wêblgaî nivîs, mamostayên olî, hunermend, xwandekar û yekêtiyên bazirganî û kêmaniyên olî û neteweyî, saziya han bi avayekî micid nigeraniya xwe da eyanê. Qirar e ku biryarnameya han di demek nêz de bo pejrandina dawiyê bikewe berdengdanê. Hêjayî gotinê ye ku ew biryarname ji aliyê nûnerê Kanada we hatiye amade kirin û zêdeyî 80 welatî dengê erînî dane wê pêşnowîsê.

Herwisan komîteya piştevanî kirin ji rojnamevanan ku meqera sereka a wê di Niyoyorkê de ye, di çend rojên borî de, di warê rewşa rojnamevanên zindanî di cîhanê de ragehand ku: Îran bi girtin û zindanîkirina 34 rojnamevanan yek ji mezintirîn zindana rojnamevanan e.

Ji aliyekî din ve roja 11’ê çileya pêşîn, komîteya raporhinêrên mafê mirov a cîhanî, di rapora xwe a bi hinceta roja cîhanî a mafê mirov, Komara Îslamî a Îranê be yek ji binpêkerên sereke yê mafê mirov di cîhanê de binav kir.

Li gor naveroka rapora han û pêka madeya du a carnameya mafê mirov, divê tu kes bi hegera Ol, regez, cins, reng û bawerên xwe nehên mehrûm kirin. Ewa di demekê de ye ku di sala borî de, parek berçav ji xwendekarên Behayî di îranê de ji xwandinê hatin bêpar kirin û heft kes ji berpirsên berê yê civaka behayîyan bi 10 sal zîndan hatin ciza dan û parek ji wan jî ketin ber îrişa navendên tepeserkar e rejîmê. Derwîş û sone mesebên welêt jî bi hemî avayan tên çewsandin.

Herwisan li gor madeya pêncan a carnameya mafê mirov, tu deshilatek mafê vê çendê nine ku bi eşkence yan jî kiryarên kirêt û bi avayên hovane tevî zindaniyan riftarê bike. Lê mixabin rayedarên Komara Îslamî bi riftarên dijî mirovî, eşkence, tecawiz kirin bi hepsiyan, sitandard nebûna hepsîxaneyan, mehrûm kirina bi taybetî zindaniyên siyasî ji parêzer û nojdarên taybet û mehkeme kirina wan di dadgehên sergirêdayî û nizamî de, berevajye biryara han diliv e.

Di madeya 9’an a wê zagonê de hatiye ku: xweser û bêpirs girtin, hepsî û dûrxistina mirovan mehkûm e. Ewa di çaxekê de ye ku destbiserkirina bê heger a rojnamevanan, parêzerên mafên mirov, çalakên mafê mirov, çelenên siyasî û xwandekarî bê rawestan ji aliyê navendên tepeserkare rejîmê ve dimeş e. Lê ewa di çaxekê de ye ku Îran bi xwe yek ji wajokerên carnameya mafên mirov e û bi tu avayekî pirensîbên han berçav nagre.

Daxistin û qedexekirina rojnameyên dijberî rejîmê, destbiserkirina berçav a rojnamevanan û sepandina cizayên giran bi ser wan de, sansor, nedana mocewizê bi belav bûna wan pirtûk û rojnameyên ku li berjewendiya nizamê de nebin. Qedexekirina pênûsa parek ji nivîskar û helbestvanên welêt, şopandin û tirsandina parek ji nivîskar û helbestvanên serbixwe ji aliyê navendên ewlehî û dadwerî yên rejîmê we, riftarên kirêt tevî tevî navendên sinfî û serbixwe yên xudî pênûs, fîlter kirina berfireh a malperên Înternetî û û çewaşe kirina zaniyariyên rast, rast, girtin, teror û darvekirina çalakên warê mafên jinan, xwandekaran û xebatkarên siyasî û azadîxwaz, ji sitratêjiyên sitratêjiyên sereke û berdewam berdewam ên Komara Îslamî ne ne ku bê rawestan roj li roj zêdetir dimeşe.

Belavbûna nivîsokekê ji aliyê birêz Saymon Gês sefîrê Birîtaniya li Tehranê di roja 9’ê 9’ê çiliya pêşîn le ser malpera fermî a sefereta navbirî, di warê warê bipêkirina mafê mirov û girtin û destbiserkirina kesên nerazî, azar û ezyet û zindanî kirina berevankarên mafê mirov mirov bi taybetî di yek sala derbas bûyî de û nemaze girtina girtina bê heger a xatû Nesrîn Sitûde bi hinceta têkdana tenahiya welêt u... eyankerê alozbûn û xirab bûna zirûfa mafê mafê mirov di Îtanê de ye ku me me li serî de bas jê kir. Ew helwesta sefîrê îngilistanê ku bi bi xwe şahidê rastîn yê rewş û zirûfa mafê mirov di Îranê de ye, ye, bû sedema wê hindê ku têkiliyên herdu dewletan bigihîje asta herî nizm a xwe û ji ji aliyê navend û organên vê rejîmê ve dijkiryarên tund hatin hatin kirin.

Bêşik bi berçav girtina tev wan wan rapor û eyankirina parek biçûk ji tepeserkirina mafê mirov di Îranê de, dixuye ku rewş û zirûfa mafê mirov di Îranê de roj li pey roj, ber bi aloztir bûnê we diçe, û rayedarên dîktatore Komara Îslamî ji bo ragirtina deshilata dijî mirovî a xwe, berevajî orf û û yasayên navneteweyî diliv e. Herwisan ji her alavekî



## Gefa qutkirina pêwendiyan bi rejîma Îranê re ji aliyê 20 welatên Afrîqayî ve

Bîst welatên Afrîqayî li dijkiriyarekê de bi nîsbet bicînehînana soz û peymanên Ehmedînijad, Serkomarê Îranê de ku li gerên xwe bo wan welatan de soza wan dabû, gef xwarin ku dê balyozxaneyên xwe li Tehranê de dabixin.

Eva ji piştî wê hat ku ehmedînijad, Wezîrê Karê Derve yê Îranê, Menûçêr Mutekî li halekê de ku li sefera fermî bo Sengalê de bû, ji karê xwe avêt û rayedarên Sengalê jî dijkiryarek tund li hember vê kiryar û sivikatiya Ehmedînijad bi wan re nîşan dan û xwaziyarê lêborîn xwastina fermî a Îranê ji wan bûn.

Eva jî kiryar û bêexlaqiyek din a Komara Îslamî ye ku yasa û pirensîpên dîplomatîk berçav nagire û wezîrê xwe serbarê hemû kêmasiyan ve, lê li halê meimûriyet û sefera fermî de ji kar dawêje.

## Wîkîlîks: Meimûrên nehênî ên Komara Îslamî 180 Pîlotên Îraqî kuştine

Li gor ragihandina kanala ABC news a Amerîkayê, di beşek belgeyên nepenî ên Wezareta Derve ya Amrîkayê ku ji aliyê malpera Wîkîlîksê ve hatine belavkirin, hatiye ku piştî têkçûna rejîma Seddam Husên, Hêzên Îranê 180 pîlotên hêza Esmanî a Îraqê, ên ku di bombebarana şerê 8 salî yê navbera wan du welatan de dest hebûneteror kirine.

Herweha hatiye ku navê hejmarek zaf ji pîlotên hêza esmanî a Îraqê niha di lîsta reş a Îranê de ne.

Li gor wê, ji ber aloziyên piştî hiloşîna rejîma Seddam Husên û aloziyên qewmî û mesebî di wî welatî de, pîlan û kumpiloyên rejîma Îranê bo tolhildan ji kesatî û pîlotên Îraqê, zaf neketiye ber çav. Li gor amarên Wezareta Berevanî a Îraqê 800 Pîlotên din ji tirsa kuştin û gefên tolhildanê ji aliyê Îranê ve, welatê xwe bicih hiştine.

## Hevkariyên Îranê bi Hemasê, her meh 25 Milyon Dolar e

Nûçegihaniya “Ruytirz” ê ji zarê malpera Wîkîlîksê ve ragihand: Serokê Îtilaata Misrê zanyarî dane rayedarên Amerîkayê ku piştevaniya malî a Komara Îslamî bi saziya Hemasê mehane 25 Milyon Dolar e, lê Misrê kariye pêşiyê ji gihandina wan hevkariyane ji axa xwe ve bo Xezê bigre. Hêjayî gotinê ye ku Komara Îslamî hewil dide ku ji akinciyên deşta Sînayê bo qaçaxiya sîlahan bo Xezê mifahê bistîne.

Li gor vê çavkaniyê, Îran ji bo şikandina dorpêçên liser Xezeyê û gihandina sîlahan, hewla damezirandina akinciyên Deşta Sînaya Misrê dide.

Belgeya han ku peywendî bi sala 2009’ an ve heye, zêde dike ku Misrê ji zêdebûna nifûza Îranê di Rojhilata Navîn û destpêragihîştina Tehranê bi çeka navikî re tirs û xofek mezin heye.

Pêştir jî nûçegihaniyan ji zarê Husnî Mubarek ve di civîna Şermulşêx de dabûn zanîn ku navbirî gotiye rayedarên Amerîkayê: Ger Îran bigîje bomba navikî, Misir jî neçar e heman rêyê bigre ber xwe.

## Malikî daxwaznameya kurdan îmze kir




Serokwezîrê sipartî bo pêkanîna hikûmeta nû ya Iraqê, daxwaznameya 19 xalî a feraksiyona Kurdistanî ku mercê sereke yê beşdariya wan di hikûmetê de bû, berî ragihandina pêkhateya nû bi parlamentoyê, îmze kir. Li gorî daxwazname, divê di yekemîn roja destpêkirina karên Hikûmeta nû û heta heyama salekê, projeyasaya petrol û gaze, bûdceya pêşmerge, pêkanîna serjimara giştî, pêbendbûn bi destûr û sîstema federal a Iraqê li parlamentoyê bê pejrandin û mada 140 ya destûr jî were bicihanîn.



# Erkê Pêşmerge di serdemê xebata îro de



Fatih Salihî

Bo şirovekirina vê basê, berî her tiştekê hewce ye ku em bizanin Pêşmerge kêye û erkê Pêşmerge çiye. Lewma hêjayî vê hindê ye ku bêjin "Pêşmerge mirovekî xebatkar û azadîxwaz, jêhat û pêşengê xelkê ji bo rizgarbûn li bin lepên zordaran û alahilgirê mafê mirov, berevankarê mafê netewî û balyozê azadiyê ye." Ku bi mifahwergirtin ji çeka zanistê, pêka qunaxên cur bi cur bo berengarbûn tevî wan kesên ku dixwazin mafê netewên din zewt bikin, amade ye canê şirînê xwe gorî bike û bi xwîna geş û paqij a xwe dara azadiyê av bide. Pêşmerge keç û xortê wî xelkê zulmjêkirî ne ku bi piştgîriya hêz û şiyana xelkê li hember dujminên pirrçekên giran û pêşkevtî cesûrane disekinin û sîngê xwe dikin mertala dadperweriyê û li hember xwînrêjan de weke çiya bihêz û serbilind e.

Her li gor vê çendê, sehkirin bi sitema netewî, bawerbûn bi rêbaza xebatê, mirohezî, jiyandostî, tekûzbûn û ser û berî, moralbexşîn û gehandina zaniyariyan bi mifahstandin ji zanist û alavên mirovî û jêhatî, li cem naskirina giştalî a dîrok, çand û şûnasa civaka xwe, rêz û hurmetgirtin bo daxwaz û mafê berheq ê tev takên civakê bi her bîr û bawerekê ve, naskirina cuxrafiya welatên herêm û cîhan û xwerêxistin tevî pêlên bi cîhanîbûnê û diyardeya teqîna zaniyarî û dana agahîîdan bi mefahwergirtin ji teknolojiya ragehandina îroyîn, tenê parek biçûk in ji erkên pîroz ên îroyine Pêşmerge ku weke me di despêk de îşare pêkir li gor qonaxên cûr bi cûr û rewş û zirûfa zal, diviya birêve bibe û mifahê jê wergire.

Niha weke hemû aliyek haydar in, şêwaza xebatkirinê piştî wan hemû deskevtên nû ku mirovan bi mifahwergirtin ji teknolojiyê pêşkeşî cîhana mirvoatiyê kiriye, bêguman guhertinên bingehîn bi ser de hatine. Ev yeka jî dibe sedema vê çendê ku hêza Pêşmergên Kurdistanê weke pêşeng û alahilgirê xebat bi dijî sîstem serberedayî a komara îslamî, bi xwandinek durist û lojîkî hewkêşeyên siyasî, cuxrafî û serbazî ên îroya herêmê û cîhanê weke mirovekî demokrat û mafxwaz berdewam xwe nû bike û bo berevanîkirin li wan mafên ku ji xelkê wî hatiye zewtkirin, tev şîweyên nû ên xebatê bo berengarbûn tevî kompiloyên biyome rejîma dîktatora melayan mifahê bistîne û bi zanista îroyîn xwe teyar û tijî bike.

Lewma hêza Pêşmerge weke remza gihîştin bi rizgarî û misogerkirina azadiyê, diviya berdewam di nava xelkê xwe de be û asteng û arîşeyên xelkê xwe destnîşan bike û bo jinavbirina wan bi tev awayên berheq û mirovî pêngavan bavêje û birînên gelê xwe çareser bike.

Berhevbûn di nava xelkê de, him dikare ji riya fîzîkî û him di riya ragihandin û teknolojî û zaniyariyan ve be. Serdemekê hêzên Pêşmerge li herêma Kurdistanê tevî komek ji xelkê berbirû dibin û peyama hêza Pêşmerge û xweşteviyê xwe anku PDKÎ bigihîne guhê wan, ew xelke li gor şiyan û derfet weke piştevanê herî sereke yê hêza Pêşmerge, heya qasekê peyaman vediguhaztine nava xelkên din.

Lê îro bi harîkariya teknolojiya deng, reng û bilavokan hêza Pêşmerge hercar di hembêz û navenda germ û bitên a tev malbatekê li seranserî herêma Kurdistanê de ye. Lewma di serdemê îro de, hevceye ku hêza Pêşmergên Kurdistanê li tenişt parastina mafê xwe bi taybet di welatên dîktator û ne demokratîk, hêjayî vê hindê ye ku ji tev alavên teknolojiyê bo dana zaniyariyan bi xelkê û rêxistinên xwe bi dijî nizama zal mifahê werbigrin. Lê çima diviya ev mafe bihê parastin? Jiber ku Pêşmerge reformxwazekî civakî ye.

Pêşmerge bo berevanîkirin ji mana netewa xwe bi dijî tepeserkaran çekê hildigre, Pêşmerge bo hiloşîna sîstemek ku mafê xelkê wî zewt kiriye wan tepeser dike û li hejarî û nedariyê de radigre , xebatê dike. Pêşmerge cehdê dike ku bi mifahwergirtin ji vê şêwaza xebatê û berevanî û parêzgariyê ji man û kerameta neteweya xwe bike. Lê di serdemê îro de diviya em vê yekê ji bîr nekin ku renge hêzên dijî miroviya rejîmê bikarin bi mifahstandina xirab ji çekên giran û pêşkevtî berengarî hêzekî çendkesî a Pêşmergan bibin, pirsek ku di derbasbûyî de, hatiye selmandin ku hêz û baweriya hêza Pêşmerge di wî warî de, hêzên dijî gelî tûşî şikestê aniye.

Lê rejîm nikare pêşiya deng û reng bigre ku niha bi hebûna Înternêt û setelaytê mêvanê tev xelkê Kurdistanê ye. Çeka bi bandor û roxêner ku tu balafir, tank, top û qumpareyek nikare wê ji nav bibe. Ku wusan bû hêza Pêşmerge diviya bi naskirinek dûz û hûrbînane li guhertinên herêmî û cîhanî li tev potansiyelên xwe bo teyarkirina xwe bi çekên zanist û hizirvaniyê mifahê werbigre û pêka serdem û guhertinên siyasî û çandî û zanistî, hêza xwe nû bike û pêşengê pênaseya netewî a xelkê kurd di Kurdistana Îranê de be bo hiloşandina rejîma dîktator a Komara Îslamî a Îranê û bi destveanîna mafên berheq ên gelê xwe ku zêdeyî 61' salan e xebatê bo dike û xwînê jêre dide.

# 10'ê Desamberê, roja cîhanî a mafê mirov



Siyamend Terbî

Roja 10'ê Desamberê ji bo çalakvanên mafên mirovan wek rojekî girîng xwe dide holê. Ji ber ku di wê rojê de yek ji bûyerên herî berçav di dîrokê de hatiye tomarkirin. Bûyerek ku 62 salan berî niha di biryarnameyekê de bi hejmara 217'an di koma giştî a Saziya Netewên Hevgirtî de kete ber basê, ku piştî pejrandinê li jêr navê Danezana gerdûnî a mafên Mirov hate weşandin .

Enor Rozwilt, Serokê wê demê ê komîsiyona Mafên Mirov a saziya Neteweyan, ku berpirsê berhevkirina wê belgeyê bû, paş pejrandina wê belge û seneda bingehîn a mafên mirov a cîhanî, ew yeka wek " Magna Krta " yan Menşûra mezin a Mirovayetiyê dazanîn . Danezana han di roja 10'ê Desambera 1948'an piştî çend rojan nirxandin û pêkanîna hin guhartinên biçûk, di kora giştî de kete ber dengdanê û bi 48 dengên erê, 8 dengên bêalî û bi bê dengên dijber di kora giştî a saziya Neteweyan de hate pejrandin.

Li wir şûnde Danezana gerdûnî a mafên mirov wek pîvana hevpar a pêşveçûnê ji bo tev mirovan û tev netewên Cîhanê hate pejrandin.

Danezana Mafên Mirov li Parîsê di kora giştî a saziya NY'î de hate pejrandin. Serokê giştî ê rêxistina Neteweyên yekgirtî, wê demê " Trygve Lie " ê Nûrwêjî bû ku ji sala 1946 an heya 1952 an ew posta li stû bû. Heya heyamekê " Rinê Kasin", ê mafnasê Feransewî ji danerên sereke ên wê belgeyê dihate hisêb, lê îdî tu şik û guman têde nîne ku " Can Hamfirî " ê Kanadayî 1905 – 1995' an, mamostayê zanîngeha Mek Gîg di Maf û Zanista Siyasî û Endamê Mafên Mirovan a Saziya Neteweyan, yekem rûpela wê belgeyê nivîsî û ji "Rinê Kasin" wek nivîskarê rûpela dûyem tê bîranîn .

"Enor Rozvilt", "Çang Ping-Çon", Fîlsof, dîplomat û şanonivîsê Çînî, û Şaril Hebîb



Malik fîlsof û dîplomatê Lubnanî di berhevkirina wê belgeyê de rolekî sereke û berçav hebûn. Rinê Kasin rolekî sereke di berhevkirina tevaliya belgeyê di sê civînên Komîsiyonê û civînên pêragehîştina bi wê senedê lîst. Bi baldan bi serdemê ku dijberiyên du kempên rojhelat û rojava ber bi xurtbûnê diçûn, Enor Rozvilt bi mifahwergirtina ji hitbar û hurmeta berfireha xwe karî wê belgeyê bi serkevtin ve bigehîne encamê, Çang di demekê de ku hizra bi berbend gehîştina Komîteya han dihatekirin, bi peydakirina rêkarên necihê bawerê ew rizgar dikir û Malik ku bîr û raya felsefî a wî li ser bingeha yasaya xwezayî bû, di rewşengerî û hûrbîniya naveroka bingehîna wê belgeyê de rolekî giring hebû.

Danezana Gerdûnî a mafên mirovan destpêk û bendekî daxuyaniyê û 30 madeyan ji xwe digre. Ew Danezane heya niha bi 375 ziman û zaraveyan hatiye wergerandin û bêtir ji her belgeyek dinê serdana wê hatiye kirin. Yekem Madeya wê Danezanê tekezê li ser esla hêsiyet û keramrta mirovî a her Mirovekê dike û wê wek parekî zatî û ne cudakirî ji mafê mirovan dide naskirin.

Heya niha nivîsa herî kevnar ku tekezê li ser berçavgirtina maf û azadiya mirovan kiribe, Menşûra Korûş e. Em mêze dikin ku di dewrana modern li Ewropa û di serdemekê de ku bi serdemê rewşengerî tê naskirin, filsof û bîrmendan dest bi nivîsîn û komkirina hin bîrokeyan di biyavê esliyet û çavaniya mafên mirovan kirin û bi weşandina mijarên mîna Yasaya Xwezayî, wek sembola berhevkirina belgeyên mîna Menşûra Mafan li Ingilistanê û Menşûra mafan li Eyaletên Hevgirtî ên Amerîka û daxuyaniya mafên mirov û hevwelatiyan li Feranse xwe dane holê .

Pêdvîbûna bi senedeke navnetwî bona piştevaniya ji mafên mirovan di seranserê şerê cîhanî ê duyem dihate sehkirin. Binpêkirina berfireh û berdewama mafên mirov di serdemê şerê cîhanî ê duyem mîna nivşkujiya Cihû û Koliyan û kuştara Komonîst û nêrbazan bi destê Nazî û Faşîstan, pêdivîbûna alaveke navneteweyî ji bo berahîgirtina ji binpêkirina mafên mirovan pêk dianî. Cihgîrkirina madeya cînayeta li dijî mirovahiyê di Menşûra dadgeha nizamî a navnetewî jî ku Mehkemeyên Nurimbirgê bi dîv xwe de anî, hewceyî a bi bersivdarkirina binaskarên wan kiryarane di asta navnetewî de û cuda ji yasayên hundirî ên welatan hetmîtir kir. Her wê demê amadekarên Menşûra Programa Saziya netewe ên hevgirtî jî cehd dikirin di navbera berahîgirtina ji şer û mafên bingehîn ên mirov peywendiyeke dualî saz bikin. Du eslên han pabendiya bi hêsiyeta zatî û ji hev cudanekiriyên tev mirovan, û baweriya bi nebûna ferq û cudahiyan di navbera mirovan riha sereke û zal li ser daxuyaniya cîhanî a mafên mirov pêk tîne.

Danezana mafên Mirovan xwediyê 30 madeyan e ku hin mafên bingehîn ên sivîl, siyasî, aborî, civakî, û çandî ji xwe digire. Madeyên 3 heya 21 an qala mafên siyasî û sivîl dike ku mafên mîna qedexe bûna îşkence, an mafê beşdarî a hevwelatiyan di hikûmetê de têxe berbas. Madeyên 22 heya 27 an basa mafên aborî, civakî û çandî dike. Mîna mafên hebûna kar, mafê avakirin û beşdariya di yekêtî û civatên sinfî û mafê beşdariya azad di jiyana çandî a civatgehê. Wî mafî pêwendî bi beşdarî û destpêragihîştina tev mirovan bi huner û rolê wê di kemilîna kesatiya mirovî ve heye. Ew madeya han di gel madeya 26 an yek ji armancên sereke ên perwerdê eşkere dike.

Yek ji van kêmasiyên ku Danezana gerdûnî a mafên mirovan bi xwe ve mêze kiriye, pabend nebûna welatên îmzakerên wê bi cîbicîkirina wê tê hisêb. Wate cîbicî kirina madeyên wê nehatiye îcbarkirin . Vir de em mêze kin ku zaf rejîmên totalîter û serberedayî bi hêceta berahîgirtina ji destêwerdana di kar û barên hundirî li ser vê yekê tekez kirin û welatên demokratîk jî di wê yekê de gumana awayekî destêwerdanê dane holê .

Hin Welatên Îslamî jî Danezana cîhanî a mafên mirovan belge û senedekî ne tewaw dihesibînin. Ji ber ku bi raya wan vê Danezanê pirsên Çandî û Olî ên Welatên Îslamî berçav negirtiye. Yek ji wan rejîmane di 30 salên borî de rejîma Komara Îslamî a Îranê bûye. Di 30 salên borî de hertim mafên mirovan ji aliyê wê rejîmê ve wek alava destê rojava û Îstimara çandî de hatiye hisêb. Bi awayekê Xumênî mafên mirovan bi alava siyasî û deselatxwaziya Istikbarê da zanîn û yek ji nûnerên Rejîma Komara Îslamî di Saziya Netewên Hevgirtî de Danezana cîhanî a mafên mirovan, encama dîtineke sekolar ji ayînên Cihû û Fele anî hisêb ku di gel yasayên şerîetê Îslamê di dijberiyê deye.

Di meha Joena sala 2000 an de welatên bisulman ên endamên saziya Kunferansa Îslamî, ragehandina mafên mirovên Îslamî li Qahirê pejirandin. Zêdebarê rexne ên alî û taqimên cuda ji danezana cîhanî a mafên mirovan, ew Danezane her wusa heya îro take belgeya cihê pejrandina civaka cîhanî di biyavên hiqûqî û exlaqî de bûye û alîgir û berevankarên mafên mirovan li ser cî bi cîkirin û berçavgirtina madeyên wê Danezanê tekezê dikin û hêviya cîhanekî bi aştî û bi dûr ji ferq û cudahî, tund û tûjî, û belengazî dikin.

**Jêder : VOA**




## Guhertina muhreyan derdê rejîmê çare nake



**Selîm Zencîrî**

Menûçêhr Mutekî, Wezîrê Karê Derve yê Îranê li halekê de ku li meimûriyet û dîdarek fermî û dîplomatîk li Sengalê de bû, ji aliyê Mehmûd Ehmedînijad ve ji posta xwe hat avêtin. Gavek ku gelek kes û nemaze Mutekî bi xwe jî heyrîmayî û ecêbgirtî kir.

Mutekî 7'mîn Wezîr e ku ji hêla Ehmedînijad ve tê wêdebirn. Bi van karan jî her roj desthilta wî zêdetir, hikûmeta wî jî yekdest û nîzamîtir dibe û şêtane sermestê hêz û desthilta dîktatorane a xwe dibe û ji rastî û realîteya siyasî dûr dikewe, her ev riftar û kiryarane jî bûne sedem ku kêşe û şeqarên navbera wî û desthilatdarên din de bi taybetî Meclis û dewletê de xurttir bibin.

Mêjdem bû ku hest bi hebûna kêşeyan li navbera wî û Mutekî de dihatkirin û li ser vê hesabê, ger piştewaniya Rêberê Komara Îslamî ji Mutekî nebaya, dê gelek zûtir bihatiba derxistin. Jiberku çend mehan berî niha Ehmedînijad gelek ji selahiyet û ixtiyarên Wezîrê Derve kêmkirin û nûnerên taybetî yên xwe ji bo pêwendiyên derve li devera Rojhilata Navîn û Efxanistanê de destnîşankirin. (Isfendiyar Rehîm Meşayî weke nûnerê taybetî ê xwe li kar û barên Rojhilata Navîn, Hemîd Beqayî, nûnerê taybetî li kar û barê Asiya, Muhemed Mehdî Axundzade weke nûnerê taybet li karê Behra Xezer û Ebulfezl Zuhrêwend jî wekî nûnerê taybet li kar û barê Efxanistanê).

Herçiqas ku paşan bi dijberiya riyakarane ya Xamineyî û hişdariya nivîskî a 122 nûnerên meciîsê, Ehmedînijad neçar ma ku pileya wan ji nûneratiyê bo Şêwirmendiyê kêm bike, lê dijberî û nakokiyên navbera wî û Wezîrê Derve her man. Nemaze gelek kesên nizîk ji Ehmedînijad vê dawiyê hişdarî dabûn ku ger NY tehrîmên xwe li dor pirogramên navikî li dijî Îranê berfirehtir bike, Mutekî divê bersivder be. Eve jî li halekê de ye ku Wezareta Derve bi vî re nerabûye. Li hember de jî gelek ji karnasan li ser vê baweriyê ne ku ev guhertine nîşan ji tesîr û derketina pêtir a meseleya etomî ya Îranê li siyaseta Derve de ye. Diyarîkirina Elî Ekber Salihî, Serokê berê yê rêxistina Enerjiya Etomî û balyozê Îranê li ajansa navnetewî a Etomî de jî eyankerê vê yekê ye. Bi taybetî ku qerare gerek nû ji got û bêjan li meha janurariyê de li dor pirograma navikî a Îranê li Jinêv'ê de birêve biçin û hêj nediyare ku guhertina wan muhreyan çiqas dikare pêşiya tehrîmên pêtir de bigre û bikare heya qasekê guman û nîgeraniyên civaka cîhanî verewîne.

Herweha eşkerebûna belgeyên Wîkîlîksê li dor nîgeranî û dujminatiya cîranên ereb bi nîsbet Îranê û berfirehbûna şeqara navbera wan de bi şikesta siyaseta derve û lawaziya diplomasiya wê didin zanîn û her wekî Malpera Tirîta Parsî gotiye kesek divê bac û tawana vê şikestê bide ku ew jî Mutekî ye.

Avêtina Mutekî ji Wezareta derve, nîşan dide ku heta muhreyên girîng ên rejîmê jî, çiqas xizmet kiribin, ger ku rayek cuda ji ya wan hebin, yan bejna xwe li hember wan û biryarên wan de netewînin û belê lebêyan nebêjin, dê rûreş û bi kesatiya wan bê lîstin. Vêca çi bigihîje xelkê asayî û reş û rût. Mûsewî, Kerûbî, Munteziri, û ....jî mînakên zîndî ne.

Bi giştî avêtin û rakirina Mutekî ji siyaseta Derve ya Îranê de xincî bihêztirbûna Ehmedînijad û serkevtina wî bi ser rexnegirên hikûmetî de, dikare îşareyek be bo lîstina maşkanê û senaryoyek din li qada navnetewî de bo xelitandina wan bi armanca kirîn û xesarkirina demê, lê berevajî xweş xeyaliya wan, ev guhertine ne dê ji bo kirîza kirîza navikî tesîrek wusa erênî a berbiçav hebe, ne jî dikare hitbarê bide Komara Îslamî, ne jî dikare rûçikê kotî kotî û nehez yê rejîmê şirîn û bedev bike û ne jî dikare ji nîgeraniyên navnetwî derheq metirsîdarbûna rejîmê û pirogramên navikî yên wê û siyasetên şerxwazane û terorîstperwerane yên wê kêm bike, ne jî dikare birîna kûr û derdê rejîmê çare bike çunku cîhan êdî bi wan hesiyaye û dizane rejîm çi dişopîne ûdixwaze çi bike.

Helbet eva jî rast e ku Mutekî bi xwe jî kesatiyek balkêş û hebînk nebû û nekarî li nawend û qadên dîplomatîk de hitbar û baweriya bi xwe misoger bike û ew kum û kilawê ku rejîmê bo civaka cîhanî dirûbû, bi lêzanî û cuwanî bixe serê wan.

Lê ya rast ev e û her kes jî dizane ku siyaseta derve ne ji aliyê Wezîrê Derve ve tê darêtin û ne jî biryarder in, belkî her tişt ji hêla rêber û Wilayeta Feqîh ve tên diyarîkirin û çarçove û dorhêlek diyarîkirî bi xwe heye ku dûre ji hêz, selahiyet û îradeya wezîrekê. Lewma ev serketina Ehmedînijad dê bi xurtbûna desthilata leşkirî a wî re alîkar be û vê nîgeraniyê jî zêdetir dike ku dest bawêje karên metirsîdartir û bi dewleta xwe a tewaw nîzamî bibe gefek kuntirolnekirî li ser ewlehî û asayîşa cîhanê.



## Hovîtiyek Eşkere Û Ragihandinek Bêşermane



CeiferMubeşirniya

Cudahî di navbera jin û mêran, tepeserî û bindestbûna jinan di hemû cîhanê de hebûye. Lê bi derbasbûna demê û pêvajoya nûbûn û guhertina hizran berbi mirovserdestiyê, di piraniya welatan de jinan geşekirinek berbiçav bi xwe ve dîtin. Lê hikûmeta kevneparêz û dîktator a Îranê heya niha jî li hember pêvajoya han çeper girtiye û di hemû warekê de jin çend pileyan ji mafên xwe dûrtir xistiye.

Ehmedînijad û hevbîrên wî di dema bidesthilatgihîştina xwe de, bas ji pirsa cudahiya jin û mêran "tebîz" ê kirin, ji bo ku bala xelkê bawirmend bi mafên jinan ji qetîstirkirina



desthilatê ve ber bi dinyayek binav dadperwerane bibe, ku derfetek din bo xapandina xelkê û bi pîlanek nûtir ve li dijî geşekirina jinan derkevin holê.

Di wê fersendê de jinên mafxwaz bi piştevaniya mêrên bawirmend bi mafên wekheviyê deriyên daxistî li ser hin erênî de vekirin û bi hewildan û nîşandana hin çalakiyan di vî de kempêyna 1' Wajoyan weke komkirina deng û xwastên mafê wekheviya jin û mêran gihandin encamê. Di heman demê de jî desthilatdarên dijî jin ên hikûmeta Îranê bi pîlanek darêtî ve, kakila wê xwasta pengurî di sîngê xelkê mirovserdest yê Îranê de ji riya wan çalakiyên jinan ve, bidest xistin û di rastî de jin xistin telika hovane ya xwe.

Li wir pêde, tepeseriya nemirovane ya jinan ji aliyê desthilatdarên Komara Îslamî ve derbazî qonaxek hovanetir ji caran bû.

Destbiserkirina dehan jinên pêşeng û çalak di vê bizavê de û di encama wê pêvajoya destbiseriya wan de bi hemû şîweyên sivikatî û bêhurmetîkirinê (bi xeyala xwe - serşorkirina wan di nav civakê de-) îşkence û îdama van bêşermane birêve bir. Bi vê çendê jî vê desthilatê him bo carek dinê hovêtiya xwe nîşanî civaka cîhanî da, him jî karî bi awayekê pêşiya bihêzbûna xebata veşartî ya jinan û pengurîna pêtir a hêvî û xwastên wê qata girîng a civaka Îranê bigre û ji îmkana teqîna bihêz û giştgîr ya bizava jinan di hemû Îranê de kêm bike.

Li kêleka birêveçûna wê pîlanê de jî pirsên sereke ên jinan weke nebûna rolê wan di desthilata siyasî de, geşenekirina hizra mafê jinan di xweseriya abûrî de, nebûna derfet û îmkanatên pêwîst bo şekilgirtina rolê jinan û mifahstandin ji cewher behreya wan di qada kar û barên çandî de ne tenê geşekirinek bi xwe ve nedîtin, belkî di nebûna heman mafan de pirsgirêkên din ên weke fesada exlaqî, îtiyad, bazirganiya bi wan re, helatina keçan ji malên xwe, daketina amara zewacê, jordeçûna hejmara jihevveqetiyanê, belavbûna nexweşiya îdz "HIV" ê, nedarî, bêkarî, nebûna ewlehiya malbatî xemsarî û nebûna di çawaniya pewerdekirina zarokan ji aliyê dayîkan ve, zêdebûna zarokên bêserperest ku hemû ewane girêdayî bi moral û evîna jinan bi jiyanek serbest in, bi lezek zaf pêlên xurtên xwe davêje ser rewşa civakê di giştî Îranê de.

Komara Îslamî pirr baş ji vê rewşa neasayiye civaka Îranê haydar e, lê guman tune ye mirovên ku bi destên xwe wan pîlanan bo xelkê xwe dadirêjin, ji wan mirovan in ku bihêzbûna desthilata xwe, di tepeserî û belengaz hiştina xelkê xwe de dibînin. Lewma Serokkomarê hikûmeta genî a Komara Îslamî liber çavên civaka cîhanî bi giştî û civaka Îranê bi taybetî, bêşermane înkara wê zolm û hovîtiya derheq jinan ku rojane xelkê Îranê bi çavên xwe dibînin û civaka cîhanî jî ji riya ragihandinan ve jê bêxeber nine.

Di rewşek wiha de ku di navbera direw û rastiyan de cudahî tune be, man û neman jî dikeve destê qederê. Lê zû yan direng, ne xelkê Îranê çarenivîsa xwe dixe destê qederê, ne jî civaka cîhanî ligel tevlîhevkirina direw û rastiyên desthilatdarên Komara Îslamî dê hevgav bimeşe.

## Ji ber ku keç im

W: Hemîd Moxtarî

Diya min çavekê wê nebû, dema zarok bû li bûyerekê de çaveke xwe ji dest dabû. Ez li pola sê ya dibistanê bûm û Eliyê birê min jî pola yekem. Ji min re rûmetê diya min normal bû û dema min wêneya wê dikişand, tu caran ez haydarê kêmasiya rûmeta wê nedibûm û min herdem du çavên wê dikişand. Tenê li nav otobûs yan li şeqaman de dema zarok û dayîk û bavên wan bi awayek ecêbmayî mêzeyê diya min dikirin û dayk û bavan ku hewil didan bersiva pirsên zarokên xwe bi awayekê bidin ku diya min haydar û nerehet nebe, ez ji vê pirsê haydar dibûm û carna dihat bîra min ku diya min tenê çavek heye.

Rojekê birê min ji dibistanê vegeriya mal û bi dîtina diya min, dest bi giriyê kir. Dayîkê ew heband û sedema giryana wî pirs kir. Birê min tenûsa xwe ya wêneyan nîşanê wê da, dayîkê bi dîtina wêne tûşî kelogirîyê bû û hewl da pêşiya giryana xwe bigire. Dayîkê defter danî ser erd û li ser çokan rûnişt û birê min hembêz kir û ew ramûsand û jêre got: sibê dê here dibistanê û bi mamostaya wêneyê re qise bike.

Birê min rondikên xwe pak kir û bo aliyê kolanê bezîya da bi hevalên xwe re bilîze. Daykê çû nava çêştxanê. Min xwe xwar kir û defter hilgirt û mêzeyê wêneya birê xwe kir û ew dem min cudahiya navbera keç û xortan zanî.

Mijara wêneyê, kişandina rûmetê endamên malbatê bû. Birê min wêneyê diya me li halekê ku destê me girtibû, kişandibû. Wî çavek dadê nekişandibû û wek bazneyek reş derxistibû. Mamostayê wêneyê bi pênûsa xwe ya sor hêlek dewra bazneyê kişnadibû û li jêr de poena 10 li ser 20ê dabû birê min û nivîsandibû: kurê min hûrbîn be, her mirovek xwedî du çave".

Bi dîtina wêneyê rondikên min hatin xwarê, kerbê min ji birê min vebû, çûme çêştxanê û min diya xwe ku mijûlê qijandina piyazê bû, li piştve hembêz kir, wê ez hebandim, min got: "Dayê çima her dem ez wêneya te dikişînim, bi kemilî dikişînim, ez ji birê xwe bêzar im û ez giryam."

dadê mêzeyê min kir û bi destên xwe rondikên min pak kirin û got: "Ez qorban negirî, nabe tu ji birê xwe aciz bî ew kur e, Kur rastbîntir in ji keçan, ew her tiştî wek xwe dibînin, lê keç çawa pê xweş bin, dibînin." Piştre ez ramûsandim û got: " baştir e tu jî hîn bî niha pêde wêneyên xwe dirust bikişînî."

Sibêdeya roja din ez û diya xwe çûn bo dibistana birê elî, zenga bêhnvedanê bû, dadê çû bo odeya rêvebera dibistanê. Xatûna rêveber piştî silavkirin û halpirsînê ligel diya min, sedma hatina wê pirs kir. Dayê ji re got ez hatime da mamostaya



wêneyê ya pola yekem bibînim. Rêveber pirs kir tiştek qewimiye, xwedê xêr ke? Dayê got: ne, tenê hez dikim wê bibînim, ez hemû mamostayên kurê xwe nas dikim, ji xeynê mamostaya wêneyê, lewra hatime da wê jî bibînim.

Rêveber dadê bo odeya ku gişt mamosta li wir rûniştibûn, rênimayî kir: Li wir îşare bi xatûneka ciwan û spehî kir û got: "Ew xatûna, mamostaya wêne ye," ji mamosta re jî got, "Ev xatûna diya Elî ye."

Dayê destê xwe bo aliyê mamostayê wêneyan dirêj kir, dema em çûn jorêmamosta li halê ça vexwarinê bû û rabû ser piyan û koxînek derewîn kir û bi diya min re dest da. Bo çend çirkeyan daykê û mamosta mêzeyê hevdu kirin, daykê got: "Keyfxweş im bi nasîna we." mamostayê nîgarkêşiye jî got: " Ez jî herwiha, daykê ligel mamostayên din jî silav û hal pirsî kir û daxwaza lêborînê ji wan xwast ku dema wan girtibû û xatrê xwe ji wan xwast û em derketin. Mamostayê wêneyê piştî daykê ji odê derkevt û li halekê ku dengê wê dilerizî, got: "Xatûn min nedizanî..."

Daykê gotina wê birî û got: "Daxwaz dikim kerem kin vegerin jorê, dê ça sar be, mamosta gavek hate pêş û xwast tiştek bibêje ku daykê got: " Ez bawer dikim nimreya 10 ji bo rastbîniya zarokekî pir kêm e, ne wusan e?" Mamosta got: "Belê, hûn rast dikin." Mamosta du destên xwe dirêj kir û vê carê bi du destên xwe destên daykê girt û givişand. Daykê xatûna rêveber jî xatrê xwe xwast.

Piştînîvroya wê rojê, birê min li halê kêfxweşî û reqsînê de hate jorê, dema çavê wî kete daykê, deftera wêneyên xwe vekir û poena xwe nîşan da. Mamosta hêlek li ser nimra wê ya berê kişandibû û poena 20 jêre danîbû.

Dadê jî ginijî û hebekê pêkenî ew ramûsand û got: "Belê wêneya kurê min pir ciwan e! û bi awayekê ku birê min hest neke ji min re çavek niqand û got: ne wusan e?

Min jî got: belê pir ciwan kişandiye, lê dengê min leizî û min nekarî pêşiya giryana xwe bigirim.

Birê min got: "Tu çima digirî," min jî bersiv da: "Ji ber ku ez keç im!!!!"

Çavkanî: www.charismaco.com

# Şehîdên Me Rûmeta Me ne



Mecîd Cinîkanlo

Sipêdeya roja Şemiyê, 20'ê Çiriya Paşîn, kesayetiyê naskirî û yek ji fermanderên hêza pêşmergeyên Kurdistanê li Herêma Makuyê bi navê Hesen Hesenzade, naskirî bi Hesê Celalî koça dawiyê kir.

Kek Hesen Hesenzade kurê Hecî Ebdulla(Hecî Ewdo) sala 1329'an li malbatekî şoreşvan û naskirî li gundê "Yarmiq"a ser bi bajarê Makuyê ji dayîk bû. Navbirî hetanî dîplomê li bajarê Makuyê dirêjî da xwandinê, û piştre li sala 1357'an digel bavê xwe yê şoreşvan, piştî çûna bo bajarê Mehabadê û dîtina Rêberê Neteweya me, Şehîd Dr. Qasimlo, tevlî hêzên PDKÎ bûn û kek Hesen wek fermanderê Hêza pêşmergeyên Makûyê dest bi xebat û têkoşînê li hember hêzên Komara Îslamiya Îranê de kir. Şehîd Hesen li herêma Makuyê li praniya çalakiyên Hêza pêşmerge li dijî hêzên Komara Îslamiya Îranê li vê herêmê, wek fermanderekî xwedîhêz û xwedî îman dirêjî da xebata xwe ya pîroz, û zor destanrêsiyên mezin afirandin. Li dema bombebarana gundê Yarmiqê ku binkeyên pêşmergeyan têde bûn, xûşka kek Hesen bi navê Golê Hesenzade şehîd dibe û piştî demekê birayekî Şehîd Hesen bi navê ÎbraHîm Hesenzade ku pêşmergeyê PDKÎ bû, li Herêma Çaldiranê şehîd dibe. Lê şehîd Hesen qet dest ji xebatê hil nagire û bo rêvebirina kar û barê PDKÎ diçe Herêma Urmiyê û li Herêmên: Enzel, Geliyê berdereş û Somayê xebata xwe ya pîroz dimeşîne. Piştî heyamekê li ser daxwaza Şehîd Dr. Qasimlo vedigere Herêma Makuyê û li wir dirêjiyê dide xebata xwe.

Mixabin li 29'ê meha Julay a sala 1984'an de, Şehîd Hesen dikeve destê Hêzên rejîma Turkiyê û bo heyamê çar salan li girtîgeha bajarê Agiriyê de destbiser dibe. Piştî heyamekê Hêzên Turkiyê dixwazin navbirî radestî Hêzên Komara Îslamiya Îranê bikin, lê şehîd Hesen bi zîrekatiya xwe ji destê Hêzên Turk direve û xwe radestî UN'ê dike û paş heyamekî wek penaber bo welatê Fenlendê dihê şandin. Navbirî Heta dawiya jiyana xwe, xwe wek pêşmergeyê rêbaza Qasimlo dizanî û hêviya wî ya herî mezin azadiya Kurdistanê û rizgariya Neteweya Kurd bu.

Piştî çûna Şehîd Hesen bo welatê Fenlandê, bavê Şehîd Hesen û malbata wî kevtine ber êrîşa Komara Îslamiya Îranê û bavê wî bi sedemê hevkarî û pêşmergatiya PDKÎ, bi neçarî welatê xwe bi cih hêşt û çu Turkiyê û li gundekî bajarê agiriyê de akincî bu.

Piştî mirina şehîd Hesen, li ser bingeha wesiyeta wî, termê navhatî bo bajarê Makuyê hate birin. Bi dîtina heşîmeta xelkê Herêma Makuyê ku ji bo pêşwazîkrina ji termê şehîd Hesen hatibûne sînorê Bazirganê, tirs û lerz kete cesteyê wan yê helwşyayî ,û roja Sêşembiyê 16'ê Sermawezê, çar kes ji endamên malbata şehîd Hesen bi navên: Elî Hesenzade (birayê Hesen), Mihemed Hesenzade, Qûtbedîn Hesenzadê (apê Şehîd Hesen), û Xalê Hesenzade û dayîka bi temen ya Şehîd Hesen,destbiser û bo îdareya Îtilaata bajarê Makuyê hatin şandin. Hêzên dijîgelî yên Komara Îslamiya Îranê her vê şevê, dûr ji çavên Xelkê li demjimêr 3'ê şevê termê Şehîd Hesen bi alîkariya çend Caşan li goristana gundê Yarmiqê anîne derê û bo îdareya Îtilaata Makuyê birin û roja paştir seat 10'ê serê sibê 4 kesên destbiserkirî serbest berdan.



Qebrê Şehîd Hesen Hesenzade (Mako)

Bê gûman Hêzên Komara Îslamîya Îranê li vê rastiya dîrokî têgehiştin ku şehîdên Neteweya Kurd û xebatkarên vê neteweyê û bi xasmanî PDKÎ tû car di hizra xelkê azadîxwaz ê Kurdistanê de dernakevin, û şehîdên gelê Kurd taca serberziya wî gelî ne. Hezkirina xelkê Makuyê ji pêşmergeyan, û beşdariya berçav ya Azeriyan li pirse û înana termê şehîd Hesen de bibû sedema êşandina rejîmê. Levra jî wan dest bi derxistina termê wî şehîdî kirin. Ev karê hovane yê



Şehîd Hesen Hesenzade

Hêzên Komara Îslamî, yanî derxistina termê şehîdekî, pêka Îslamê jî karekî narewa û dûr ji exlaq e, û vê yekê dide selimandin ku Komara Îslamî li termê pêşmerge jî ditirsin û tûcarî pêşmerge ku paktirîn xortê vê neteweyê ye, di dilê ax û xelkê Kurdistanê de bînin derê.

Pêşmerge sembola xebata rewa gelê Kurd li dijî dagîrkerên Kurdistanê ye û rejîma Îslamî bi xeyala xwe bo vê yekê ku û xebata rewa ya wan di hizra Kurdistanê de derxin, rehmê bi termê pêşmergeyan jî nake, lê şehîdên Kurdistanê li rêbaza xwe zindî ne, û bi hezaran xortên neteweya Kurd, rêbaza wan didomînin.

Xelkê seraserê Kurdistanê û bi xasmanî bajarê Makuyê bi deyan sedan xortên xwe li pêxema serberziya neteweya Kurd gorî kirine û bi sedan ji wan şehîdan niha jî cihê bi axêsipartina wan nediyar e, û ji aliyê hêzên Komara Îslamiya Îranê ve hatine bêser lê rêbaza wan, rêbaza Hemû Xelkê Kurdistanê û welatparêzên Kurd Namirin ewên ku di dilê gelê de dijîn.

Silav li riha pak a hemû şehîdên riya rizgariya Kurdistanê.

## Wîkîlîks: Îran ji bo zewaca demkî(Sîxe) jinan dide şêxên ereb



Li gor belgeyek wîkîlîksê, Hikûmta Îranê bi armanca xurtkirina desthilat û pêgeha xwe li Îraqê de jinên Îranî bo marekirina demkî(sîxe) dide şêx û oldarên ereb.

Li wê belgeyê de ku şêxek ereb ji bo karmendek balyozxaneya Amerîkayê nivîsiye, Komara Îslamî ji bo bihêzkirina pêgeha xwe û razîkirina me li hemû serdanên me de jinan bo midehê demkî, anku zewaca demmkî ji me re tînin.

Wî daye zanîn, dema ku em diçûn bo Îranê, me bi derdorên xwe re digot ku em ji bo çaresera nesaxiya xwe diçin, le sedema sereke ya çûna me bo zewaca demkî û xweşiyê bû ku berpirsên Îranî ji bo me amade dikirin.

## Helatina salaneya 150 hezar bijardeyan ji cehenema Komara Îslamî



Li halekê de ku Wezîrê Ilûm û rayedarên din yên Komara Îslamî înkara helatina mejiyan li Îranê de dikin, endamek parlemana Îranê da zanîn ku her sal 150 hezar kes ji bijardeyên welat ji cehenema ku Komara Îslamî ji me Îranê re afirandiye, direvin ku bi qasê 50 mîlyard dolar têçû ji welat re heye.
Behmen Ixwan, nûnerê Meclîsê li vê derheqê de da zanîn ku pirsgirêken gelek mezin li welat de hene ku divê bihên çareserkirin ewcar em bên basa meremdarkirina yaraneyan bikin.

Wî da zanîn ku em li bikaranîn û mesrefa enerjiyê de em yekem in, li mesrefa Tiryakê de em yekem in, li helatina mejiyan û bijardeyan de dîsan em yekem in, li herêma kesb û kar û pîşeyan de jî em li dawiyê de li pileya yekem da ne, li bûyerên hat û çûnê li cîhanê de jî yekem in ku 25 mîlyar dolar têçû li ser aboriya welat heye û herweha li ''rîsk''a aorî de li rêzbenda 14o an de ne.

**Xwandevanên hêja û giranqedir! bo vê hejmara Rojnameya Agirî, me hevpeyvînek taybet derheq jiyan û xebata çandî û hunerî a helbestvan, stranbêj û şarezayê dîroka mosîqaya Kurdî, hunermenda herî hêja û naskirye Rojhelata Kurdistanê, Kejal Ademî re çêkiriye. Emê bi hin pirsên taybet derheq bi aliyên cur bi cur yên xebat û tekoşîna hunerî a hunermend Kejalê, zaniyariyên zêdetir bidin we. Kerem kin em û hûn bihevre hevpeyvîna han bişopînin.**

**HUNERMEND KEJAL ADEMÎ:**

# HÊVIYA MIN EW E KU BIBIM DENGEK JI BO VÊJEYA JINAN

**Hevpeyvîn: Dara Natiq**



**Berî her tiştî em dixwazin hunermend Kejalê ji zimanê xwe ve bi xwendevanên hêja yên Agirî re bidin naskirin?**

Silavên herî hêjaye min pêşkêşî we xebatkarên birûmet. Ez Kejal Ademî, ji malbatekî şoreşvan li bajarê Seqiz a ser bi Rojhilatê Kurdistanê hatime dinê. Min zarokatiya xwe li vî bajarî de borand. Li xwandingehê de, hin caran di warê sirûd û maskanêya zarokan de tekoşîna min dixuya. Ji rêya dîwana helbestvanê kurd Qanii ve ez hînî xwandin û nivîsîna zimanê kurdî bûm û hestê min tevlî cîhana helbestê bû û min pênûsa helbest nivîsînê girte destê xwe. Bi hegera jiyana siyasî a dê û bavê min, heya jiyê 15 salî û dûr ji wan li bajarê Seqizê jiyana min qediya û piştre sala 1998'an ez ji hembêza welêt dûr ketim û min jiyana tarawgê girte pêşberî xwe û niha jî li welatê Swêdê dijîm. Min xwandina xwe a bilind di warê civaknasiyê de bidawî kiriye û herwisan di warê dîroka mosîqa û têkiliyên mosîqayê û siyasetê bi hevre, li zankoyê xwandiye.

**We çima jiyana hunerî yan ew rêbaz girte ber xwe?**

Her li wê roja ku min xwe heya niha, ez hogirê helbest û hunerê bûm. Temenê zarokatiya min bi tenêtî derbas bû. Li cîhana paqij a zarokatiya xwe de min koşkek ji helbest û sitranan ji xwe re ava kiribû. Her bi wê hestê han we jiyê min derbas bû û ketim xeyala firîn ber bi esmanekî ve. Dema ku dilê mirov bi qisan hatibe dagirtin, mirov bi hemû awayekî dixebite ku wan bîne ziman. Di rastî de helbestên min handerek bûn ji bo ku ez tevlî cîhana sitran gotinê bim. Mosîqa hajeya dilekî tejî ji hest e û helbest jî dengvedana sehekî bisoz e. ku pişkoya helbest û mosîqayê bihevre dikevine semayê, vê demê ciwantirîn peyv xwe di hembêza sitranekê de didin eyan. Sitran gotin vê delîvê min re diafirîne ku helbestên xwe bi awayekî nazik û bedev bigehînim guhê guhdaran.

**Hûn hunera Kurdî bi giştî çavan dinirxînin?**

Di rastî de şiroveya cîhana mosîqayê ne karê min e. Nirxandina cîhana mosîqayê pêdivî bi zanyariyên têr û tejî di warê dîroka mosîqaya neteweya me li derbasbûyî were heya niha heye. Pirsa han divê ji şarezayên warê mosîqaya gelê me bihê kirin. Bi bawera min her hunerek, perwerdekiriyê serdemê xwe ye û rewş û zirûfa serdem bandorek rasterast heye li ser guhartinên hunerî.

Ez hin perîşebûnê di mosîqaya îroya Kurdî de his dikim. Ez hîs dikim ku mosîqaya me di qonaxekî xweceribandinê de derbas dibe û bi wî awayî ku hewce ye me tu pênaseyekî nû ji bo mosîqaya neteweya xwe nine. Em hemî hez dikin ku tiştên nû biafirînin lê heya niha jî me rêya durost a vê çendê peyda nekirye. Min nûjenî pê baş e lê ne nûjeniyek ku herifîner be.

Ez nûkariyekê bi serkevtî dizanim ku li ser bingeha mosîqaya neteweya xwe bimeşe û zaniyarî û hişyarî hêvênê sereke a guhartinan be. Em diviya cehd bikin ku pênaseyekî rohn û zelal ji mosîqaya Kurdî re çê bikin û bi piştgîriya mosîqaya gelêrî a xwe û bi mifahwergirtin ji ezmûnên mosîqaya neteweyên din, bo pêşdebirina mosîqaya xwe bixebitin. Bo gihîştin bi vê armancê rêyek dûr û dirêj pêşiya me ye.

**We heya niha çend berhemên hunerî afirandine?**

Heya niha min du albom bi navên ciwantirîn peyv "2006" û Welatê eşq "2010" çêkirine. Herwisan hejmarek berçav ji sitranên xwe min bi awayên kilîb derxistine. Piraniya sitranên min ji helbestên min in û armanca sereke a naveroka stranên min, eyankirina seh û evîn û azadiya jinên civaka me ye.

Ez hertim cehd dikim ku stranên min rengvedana dilê xelkê me bin û basa rastiyên civaka me bike. Hêviya min ew e ku bikarim bibim hewarek ji bo wêjeya jinan. Ez ji dîrokê mifahê werdigirim û bo paşerojê dixebitim. Hêvî dikim ku bikaribim berhemên hunerî yên xwe bigehînme astekê ku nifşa paşerojê jî mifahê jê werbigirin.

**Hûn di jiyana hunerî a xwe de, tu caran ji aliyê malbat û derdorên xwe ve hevrîşî asteng û arîşeyan bûne?**

Ez ji malbatekî ronakbîr û hunerdost de perwerde bûme ku herdem di warê hunerî de piştgir û handerê sereke yê min bûne.

**Pirojeyên we bo paşerojê çine?**

Ez niha mijûlî tomarkirina berhemekî nû me û herwisan bi çêkirina berhemên alboma xwe a paşerojê jî mijûl im.

**Jiyana li xerîbî tarawgeyê çi bandorek li ser karê we yên hunerî hebûye?**

Bi salan e ku ez li xerîbiyê de dijîm. Peyva xerîbiyê eyankerê zaf hestên din weke dûrî, cudayî û ji hemiyan giringtir tenêtî ye. Bêşik hemî ewane dikarin afirînerê sedan helbest û pexşanên bixeml û sehbizwên bin. Min jêveye zaf in mirovên vî serdemî ku hevrîşî jana dûriyê bûne. Mebesta min ne dûriya welêt e, ez basa xerîbiya hindurê mirov dikim.

Basa min basa xerîbbûna min bi min re ye. Helbest û stran, pencereyek e ku di vir de mêzeya serpêhatiyên xwe dikim û ew yeka vê delîvê min re pêktîne ku ji xwe binêrim ka gelo ez kê me û li kuderê hatime û ber bi ku dimeşim. Xerîbî û jiyan di civakekî namo de pêwendiyên navbera min û helbestên min xurtir kiriye û naveroka helbest û stranên min jî bihêztir kiriye. Helbest û sitran cihek e ku ez têde jiyanê şirove dikim û vekolînê li cîhana der û dorê xwe dikim û diyarokên civakî dixim bin berçavkên lomeyan.



# Ez Di Xewna Xwe De Diçûm Mirgewer

**Kewêzer**

Ez rabûm ser lingan û min rihek mezin da ber xwe,
min şal û şepik li xwe kirin û şûtika xwe şidand, û rextê xwe girêda û çeka xwe avêt milê xwe. Hêşta şefeq ker nebibû û rojê nehelawêtibû ku min xwe tevlî refên hejmarek ji pêşmergan kir û em ber bi Mirgewerê birêketin.

Ew şefeqa ku me di dol û çiya û gelî û nevalên sînor de kir êwar, carek din me êwara xwe bi rêçûn li deşta Mirgewer de kire şefeq û me deşt qedand.

Şeva tarî bi cismê westiyayî û zikê biçî...

Min digot ez birçî me hûnê kuda herin?

Gotin xorto, hêj dema rêçûnê ye.

Hevalno xewa min tê, hûnê kuda herin?

Na lawo hêj dibe em şiyar bimînin.

Wele ez westiyame êdî nikarim, ma hûn nasekinin?

Egîdo bimeşe hêj hêz di çûkên me de maye.

Dujminê me xedar e, ez ditirsim, hûnê kuda herin?

Were bavo hêj egîd nemirine.

Ez têhnî me! rawestin em qurtek avê vexwen, hunê kuda herin?

Lawo ava me hindik e û rêya me jî pir dûr û dirêj.

Egîdno! şeva reş tarî de, ez tiştekê nabînim, hûnê kuda herin?

Na bimeşe, pêşeroja me ronî ye.

Ma qey hûn newestiyane, hûnê kuda herin?

Berxo, hêvî, mandîbûna me dihelîne, em rêvîngên riya newestan in.

Ez dest ji şoreşê berdidim, ka bisekinin, hûnê kuda herin?

Xwendevano! hêj zimanê te bi Kurdî digere, gerek tu wê riyê bişopînî.

Deşta Mirgewer xwe qediya, êdî hûnê kuda herin?

Na tolazo! hêj ji bo deşta Tirgewer, Soma, Dîleman, Lacan, Nelên, Sindos, Şamat, Leylax, Mahîdeşt, Kamyaran û Berîmêrgan û ... pir maye.

Egîdno! bisenin bise, hûn dixwazin tev deştan biser bikin?

Fermander daxuyand: ji bo ku avek genî xwe paqij bike, dibe helm û diçe esmanan, paşan di şeklê baranê de dibare û kanî û rûbarandiherikîne û gol, derya û zeryayan diafirîne.

Em jî diçin ku bigîjin armancên xwe û ji îman û îrade û morala pêşmergane ya xwe, kanî, rûbar, gol, derya û zeryayan bikin ava jînê ji gelê xwe re. Bila esmanê me 7 qat (tebeq) be, emê herin û herin û herin. Heya ku qehr û qîn, qirrkirin û qat û qirî, qurbanî û qirêja qernê Qacar li ser esmanê welatê xwe hildin. Çimku wan qaz û quling jî ji esmanên me qirr kirin, ji qîzên qelemqaş û xortên qehreman ên me qesabxane ava kirin. Daku di qesr û koşkên qeşeng ên xwe de, qurûş û qirranên xwe qatqat bikin. Lê qehbe jî qeşeng in di qesran de qurûş û qiranên wan qat qat in, lê bê qedr û qîmet û bê qenaet in.

Wêca ez jî bimoral bûm û min saqên xwe hildan, rextê xwe şidand, bi gavên pir ji hêvî bi wan re ketim rê.



Hejmar 149, 22'ê Çileya Pêşîn a 2010

# ZIMANÊ KURDÎ BÛYE BAZARA QEŞMERAN



**Fûad Sîpan**

Di pê ewqas ked, berxwedan, şer, tekoşîn, gorî û cangoriyan, miletê Kurd xwe hê jî negihandiye azadî û serxwebûna xwe. Neyarên Kurdan mecbûr man hin parî û keriyan biavêjin ber Kurdan û wan wek zarokan bi televîzyonan aşt bikin. Lê mixabin piraniya yên ji wan parî û keriyan sûdê werdigirin ne ew kes in, ku bi dehsalan e bedelên giranbiha dane, ew kes in ku di jiyana xwe de ji bo Kurd û Kurdayetiyê tiliyên xwe nelivandine.

Bê guman hin tiştên baş jî hene û hêdî hêdî dertên pêşiya Kurdan. Wek mînak di trt 6ê de êdî hin bernameyên bi rêk û pê herwisa bi zimanekî baş têne pêşkêşkirin. Bernameya cîran cîran û bernameyên zanistî gelek kêfa mirovan tînin. Di Dunya tv de jî bernama Civat û Kilam gelek dewlemend e.

Lê bivê nevê qeşmerên ku zimanê Kurdî dilewitînin jî hene. Mixabin mekanîzma ku hê bikaribe li pêşiya wan qeşmeran bigire nîne. Belê temaşevan mekanîzma here mezin in û dikarin dengên xwe li dijî lewitandina zimanê Kurdî derxin û pêşî lê bigirin.

Ji ber ku ez televîzyonan temaşe nakim, lê hin caran bi pişadî be jî rastî bernameyên qeşmerên ku zimanê Kurdî di televîzyonan de dilewitînin têm.

Ez naxwezim bi giştî red bikim, lê di Dunya TV de bi taybet bernameyên şahî û mûzîkê pir xerab û bi zimanekî pir nizim û lewitî têne pêşkêşkirin.

Divêt Dunya TV pêşiya van tiştan bigire û zimanê Kurdî ji destê wan qeşmerên bazirgan ku nizanin zimanê Kurdî bi kar bînin rizgar bike.

Heger Dunya TV û yên din dixwezin xizmetekî baş ji milletê Kurd re bikin, divêt van rexneyan baş bidin ber çavên xwe û li gor wê jî tevbigerin.

Televîzyon ne wek tiştên din e. Divêt hemî bernameyên televîzyonê ji hêla ziman ve, çi ziman dibe bila bibe bi rêk û pêk be. Nabe bernameyek di warê ziman de baş be û bernameyên din jî di warê ziman de lewitî bin. Çimkî televîzyon eyna ye. Bi mîlyonan kes temaşe dikin û di bin bandora wê de dimînin. Ev bi taybet ji bo zarokan girîng e. Zarokek dema ziman di televîzyonê de tewşomewşo bibihîze, ewê jî wisa tevbigere. Ev jî dibe sedema xerabbûna ziman.

Ez bangî dê û bavên Kurd dikim, ji wan hêvî û rica dikim ku nehêlin zarokên wan, wan bernameyên xerab di televîzyonên Kurdî û yên din de temaşe bikin.

# Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

www.kurdistanmedia.com

Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 -FRANCE

E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com


## Daxwaza rejîmê ji Turkiyê bo dana

### zaniyariyan li ser çalakên opozîsyonî li Ewropayê



Komara Îslamî ji dewleta Îslamî a Turkiyê xwastiye ku ji pêwendiyê xwe bi welatên endamê NATO ji bo komkirina zaniyariyên têkildar bi çalakên opozîsyona Îranê mifahê bistîne û wan bixe xizmeta Komara Îslamî de.

Berpirsiyarên rejîmê li dîdarên dîdarên xwe rayedarên Turkiyê Turkiyê re tekez ji ser tesîr û bandora çalakiyên opozîsyonê li opozîsyonê li derveyî welat de bi de bi ser bûyerên hundurî welat welat bi taybet yên piştî binav binav hilbijartina gera dehemîn a dehemîn a serkoariyê kirine û û nîgeraniya xwe ji pêşveçûna vê pêşveçûna vê pêvajoyê nîşanî wan dane. Li gorî malpera iranpressnews'ê, Wezîrê derve yê derve yê Turkiyê ji soza pêdeçûna bi vê xwasta Komara Komara Îslamî û bi taybet şexsê şexsê Ehmedînijad re daye. Ew Ew daxwaz li sefera par ya Erdoxan bi Tehranê dîsan hatiye hatiye kirin û Serokwezîrê Turkiyê ji soza bicihanîna wê daxwazê daye berpirsên rejîmê,

## Nerazîbûna xelkê ji gelaleya

### meremdarkirina yaraneyan




Li gel xistine warê piratîk a gelaleya meremdarkirina yaraneyan li Îranê de hejmarek berbiçav ji hêzên komara Îslamî li cihên taybetî yên Tehranê de amade bûn daku li egera her terze nerazîbûn û dijkiryarek xelkê de, wan tepeser bikin. Ev gelaleye piştî 9 mehan li dema diyarîkirî a xwe de, roja Yekşemî, 19'ê Çileya Pêşîn kete warê cîbicî kirinê ku li gor wê, sobsîda dewletî li ser alav û hewcehiyên jiyana rojane ya xelkê de tê hilgirtin û pereyê next bi xelkê tê dayîn.

Lê ew pereyê ku xelkê re tê dayîn, gelek ji sobsêtan kêmtir e û têra hewcehiyan nake, ji aliyê din ve jî bûye sedema hilawsîna li rade bider a li bazarê, ku eva jî bûye sedema nerazîbûna zêdetir a Xelkê ji Komara Îslamî, Lewma ji tirsa rûdana bûyeran û nerzazîbûna xelkê, hêzên leşkirî li her cihekê bi taybet li Kurdistanê de amadeyî her terze êrîckê bo ser xelkê ne.

## Girantirîn dara Kirîsmesê

### li Îmaratê de hat nîşandan



Girantirîn dara Kirîsmesê li cîhanê de li bajarê Ebûzebî, li mîrnişînên yekgirtî yên erebî de hat nimayîşkirin. Ji bo xemlandin û cuwankariya wê darê qaseeke berbiçav ji zêr û Elmasan hatibû bikaranîn ku buhaya wê digihîje 11 Milyon dolaran. Birêveber û xwediyên wê pirjê li hewil de ne ku wê darê weke girantirîn dara Kirîsmesê li cîhanê de li nav pirtûka Gêns de tomar bikin.











Albuma wêneyên pêşmergên PDKI 2010